HERDEM RASTÎ

# BasNûçe

ISSN 2148-5305 9 772148 530008

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 113 08 - 14 Tebax 2016 basnuce.com



Ebasê Kemendî

Pîrê hunera kurdî

R16

# Ji bo aştî, dadmendî û çareseriyê

Roboskê, Hrant Dink, Paris, Sirûc, Sêrêkaniyê, Tahir Elçi...

## Di tariya Enqerê de wenda nebin!



Di şeva derbeyê de kurd li dijî derbekeran li qadan herî li pêş bûn. Yekem kesên ku di şerê dijî derbekaran de li ser pira Stenbolê hatin kuştin jî kurd bûn. Bawerî û fedekariya kurdan a ji bo aştî û demokrasiyê şeva derbeyê jî derket holê. Hemû kurd li dij derbekaran derketin kolanan û helwesta xwe ji bo demokrasiyê û dijî derbeyê eşkere kirin. Gelê kurd niha daxwaz dike ku ji bo aştiyeke mayînde ew derbekarên ku li dijî wan jî gelek sûc û tawanan kirine bên darezandin.

Hikûmeta ku ji neçarî berpirsiyariya siyasî û hiqûqî ya qetlîamên wek Roboskiyê li xwe girtibû, niha diyar dike ku ew tawan ji aliyê darberkar û Cemaatê ve hatine kirin. Dayikên Roboskiyê ku Erdoğan ji wan lêborînê xwestibû niha li benda adaletê ne. Gelê kurd soza Erdoğan ya ku digot; 'Em ê destûrê nedin ku ev mesele di tariya Enqerê de wenda bibe' bibîra wî tîne û dixwaze soza xwe bîne cih.

R02-3-4



Fermandar Qasim Şeşo:

## Ji bilî Kurdistanê tu kesî ji êzdiyan re tiştek nekiriye

"Cenabê Serok bi xwe serpereştiya Operesyona Şengalê kir. Kurên wî, birayên wî û hemû malbat û mirovên wî jî pê re bûn û artêşeke gelek mezin ya Pêşmerge jî hat. Spasiya hemûyan dikim.

R08-9

Mesûd Barzanî:

## Em yek buhust xaka xwe nahêlin

"Beriya 2 salan li Şengalê karesateke mezin bi serê gelê kurd de hat. Ev ne karesata yekem bû, lêbelê hêvî dikim ya dawîn be. Ev karesata hatiye serê birayên me yên êzdî, bi serê me hemûyan de hatiye. Jinên êzdî namûsa me hemûyan in. Keça êzdî serê te bila bilind be, em hemû bi we şanaz in."

R10-11



# Divê kujerên kurdan, kujerên aştî û çareseriyê bên dîtin

**Yeter Polat - Dilan Almaz - M.Emin Kan - Ahmet Özyeter - Emre Topuz**

Piştî hewldana derbeyê li Tirkiyê, Hikûmetê, di warê adlî, perwerde, îdarî, leşkerî û emnî de dest bi guhertinên nû kir ku guman tê de nîne ew ê tesîreke mezin li ser civakê bikin. Li aliyê din tê çaverêkirin ku ew ê guhertina Destûrê jî bê rojeva Meclîsê. Herwiha amaje li ser wê yekê jî heye ku ew argûmanên derbekar bikartînin û meseleya kurdan weke hincet destnîşan dikin jî di amadekirina destûra nû de bê nîqaşkirin.

Di vê serdema ku dewlet ji nû ve tê sazkirin de kurd, hêviya wê yekê dikin ku hêmanên wan "cudaxwaz" destnîşan dikin jî ji holê bên rakirin, kujerên wan bên diyarkirin û dixwazin mafê wan ê rewa û demokratîk bêne teslîmkirin. Di vê çarçoveyê de bûyerên ku di rabirdûya nêzîk de pêkhatine û bûne sedema trawmayan di nava kurdan de bên zelalkirin. Herwiha tevkujiya Roboskê, bi sedan bûyerên ku bûne sedema mirinên bi sedan kesan, şer û pevçûnên ku hêj berdewam dikin û bûne sedema kuştina xelkê sivîl bên cezakirin. Amaje li ser wê yekê heye ku hikûmet bi tenê ne tawanên li dijî dewletê, dixwaze tawanên li dijî gel jî hatine kirin û bûne sedema pevçûn di nava civakê de jî bê îspatkirin. Li aliyê din herwiha te gotin ku heta rûbirûbûn çênebe wê aştiyeke mayînde û çareserî jî pêk neyê. Li aliyê din angaşt û şîrove li ser wê yekê jî hene ku heta dewlet û hikûmet kujerên Roboskê eşkere neke û dev jî înkar û tunekirina kurdan bernede ew ê ji nû ve sazkirin serkeftî nebe.

Meseleya kurdan di 40 salên dawiyê de hem li Tirkiyê û hem jî li nava kurdan bûye sedema xisareke mezin. Herwiha meseleya kurdan bû hokara sereke ya têkçûna hemû hikûmetan. Herçend nebûna adaletê weke sedema şerê kurd û dewletê pê destnîşankirin jî, kiryarên hin rayederaên dewletê yên li dijî kurdan jî bûne sedema pevçûnê û neyariyê. Tewanbarên dosyayên Ergenekon û Balyozê yên ku ji aliyê rayagiştî tê zanîn ku destê wan di kuştina kurdan de hene nehatin darizandin. Ew bi tenê ji ber komployên li dijî hikûmetê hatin darizandin. Ev yek jî bibû sedem ku hêviyên kurdan ê çareserî û aştiyê têk herin û hêviyên şerxwazan dîsa geş bibin.

Niha destê Hikûmetê gelekî bi hêz bûye. Herwiha kesên rêgiriyê di ber wê de bikin hemû hatine tasfiyekirin. Tesîra leşkerî û metirsiya rêxistinên derbekar a li dewletê hatiye şikandin. Kesên ku beşdarî di mirina kurdan de kirine hemûyan hewldabûn ku derbeyê pêk bînin. Ew kes jî niha hatine destgîrkirin. Hêviya kurdan jî ji hikûmetê ew e ku kiryarên Roboskê û bûyerên din bêne darizandin.

Ew kesên, derbeker û rêxistinên tarî yên ketine nava dewletê hewldane ku di navbera kurdan û dewletê de arîşeyan derxin. Derbekaran ji bo meşrûiyeta derbeyê hewldane ku tevkujiyan jî pêk bînin û bi sedan kes kuştine. Mînaka herî berbiçav kuştina rojnamegerê ermenî Hrant Dink e. Bi salan e kujerên wê bûyerê dihatin zanîn. Niha ew bûyer dîsa tê şopandin û lêkolînan dîsa destpê kir. Zêdetir ji 30 leşker û polîsên ku beşdarî kuştina Dink bibûn niha hatin destgîrkirin.

Li aliyê din Fermandarê Hêzên Hewayî General Akın Öztürk û Serbazê Baregeha Jendirmeyan a Qîlabanê Hüseyin Erten ji ber beşdarî di derbeyê de kirine hatin girtin. Kurd dixwazin ew kes bi tenê ne ji ber hewldana derbeyê, ji ber pêkanîna komkujiyan jî bên darizandin. Di wê serdemê de Serokwezîrê wê serdemê Recep Tayyip Erdoğan lêborîn xwestibû. Herwiha dayikên Roboskê niha li benda adalete ne.

Çavkaniyên nêzîkî hikûmetê jî di wê baweriyê de ne ku tawana Roboskê bi tenê ne li dijî kurdan, li dijî hikûmetê jî hatiye kirin. Piştî hewldana derbeyê ya di 15'ê Tîrmehê diyar bû ku kesên fermana Roboskê fermana derbeyê jî dane. Niha wezîrên hikûmetê dibêjin ew ê dosyaya Roboskê jî ji nû ve bê vekirin. Kurd dixwazin li gel Roboskê, kuştina sê jinên kurd li Parisê, komkujiyên Pirsûs û Enqerê, kuştina du polîsên li Serêkaniyê, maxduriyeta girtiyên KCK'ê kuştina Tahir Elçi jî bên zelalkirin. Çavdêrên siyasî, li aliyê din balê dikşînîn ser şerê zêdetir ji salekê ye li Kurdistanê berdewam dike jî û amaje li ser wê yekê dikin ku şerê xendekan, wêrankirina bajaran jî parçeyek ji proseya derbeyê bû.

Cemaat ku bibû sedema têkçûna proseya çareseriyê, hevdîtinên Osloyê yên di navbera hikûmet û PKK'ê de eşkere kiribû û dest bi proseya kemînan kiribû. Roboskê, Paris, Pirsûs, Enqere û mirinên li Serêkaniyê herwiha destpêkirina şer ji aliyê PKK'ê ve, bibûn weke rêze komployan tên destnîşankirin. Bi mirinên li navçeya Serêkaniyê re Artêşa Tirkiyê dest bi bordûmana Qendîlê kir. Herwiha piştî wê yekê şarederên BDP'ê "rêveberiya xweser" îlan kiribûn. Li wan navçe û bajaran şerê xendekaan destpêkiribûn û di encama wî şerî de bi hezara kurd bêwar mabûn û xaniyên bi hezaran kurdan hatibûn xirabkirin. Herwiha hê jî bi hezaran kurd bê xanî mane û li benda wê yekê ne ku çareseriyêk pêk were û adalet bi cih bibe.



## Lêpirsîn bila ji Roboskê destpê bike

Balafirên şer yên Tirkiyê 28 Berfanbar 2011'an li Roboskê piraniya wan zarok 34 kurdên sivîl qetil kir û di ser vê bûyerê re 5 sal derbas bûn. Di vê heyamê de li ser dozê tu pêşketin çênebû. Raport hatin amadekirin. Belgefîlm hatin kişandin. Roboskê ya ku ji bo kilam û girîn li ser hat kirin û peyker hatin çêkirin, di hişê kurda de bi êşa xwe ya roja ewilî cihê xwe digire. Xelkê Roboskê ku piranaya wan zarok, cesedên parçebûyî û şewitî yên zarokên xwe kom kirin, ji wê rojê heta îro di nava şînê de ne.

Hikûmeta ku neçare bi raboriyê re bê rûbarî hev û ji kiryaran hesab bipirse, ne tenê ji bo derxistin û pûçkirina komplo û çalakiyên ku meşrûyeta wê têxin tengasiyê, sûçên ku li dijî kurdan jî hatine kirin derxîne holê, ji bo demokratîkbûyîna Tirkiyê û bo aştiyê, pêngavên herî cîdî tên qebûlkirin.

Herîkîna kurda di şeva hewldana derbê de bo kolanan û berxwedana wan ya li dijî tankan, herwiha rastiya kuştina herdu welatiyên kurd ku ku herî ewil ew hatin kuştin li ser Pira Boğaziçiyê, li hemberî fedakarî û baweriya kurdan bi demokrasiyê bo hikûmetê dibe deynê vijdanê. Kurd di şeva hewldana derbê de li hemû bajaran li dijî derbê derketin kolanan, helwesta xwe bi demokrasiyê re nîşan dan û ji derbê re gotin 'na'. Miletê kurd niha jî daxwaza wê yekê dike ku ew derbekar hesaba qetilkirina xizmên wan jî bidin û ev dadwerî ji bo aştî û çareseriyeke rasteqînî bibe bingeh.

Miletê kurd gotina Erdoğan ku dema komkujiya Roboskêyê de Serokwezîr bû, tîne bîra wî ku gotibû; "Em destûr nadin ku ev kiryar di tariya Enqerê de winda bibe" xwedî derkeve.

Rojnameger, akademîsyen û siyasetmedaran derbarê girtina kiryarên Roboskê û komkujiyên din û tesîra wê ya li ser Proseya Çareseriyê, ji BasNûçe'yê re nirxandin:

## Rojnameger Oral Çalışlar: Divê hikûmet têkîliyên xwe ji bilî FETÖ'yê jî derxe holê

Heta îro me guman dikir ku tiliyên FETÖ'yê di nav kuştinan de heye. Me, ev şik anî ziman. Bi darbeya 15'ê Tîrmehê diyar bû ku gelek dozger jî di nav wan karan de hene. Ez bawer dikim ku di nav kuştinê, û rêxistina Fethullah Gülen de têkîlîyek çawa heye, dê diyar bibe. Herwisa pêwendiya hikûmet û dewletê ji bilî FETÖ'yê bi ti kesî ra heye? Ew çiqas beşdarê vî karî bûye? Çiqas beşdar bûn. Lê çiqas parastin. Li gorî min; heger parastibin, hewce ye ev jî bê diyar kirin. Em niha dibînin ku li Rojhilatêbaşûr hemû meqamên krîtîk û leşkerî di destê fermandarên derbekar/ FETÖ'yê da bûn. Em dizanin ku ew şer û aloziyê dixwazin. Em di serî de dizanin ku Cemaet/ Rêxistina Paralel hertim li ser riyên çareserkirina Kêşeya kurd astengan derxistin, çareserî nexwestin û polîs û dadwerî bi dest xistin. Operasyona ku li dijî Cemaetê pêk tê, tê vê wateyê ku gelekî ji wan ji leşkeriyê hatine paqijkirin û desterserkirina wan dide xuyakirin ku astengek li ber çareseriyê rabûye. Em hêvî dikin ku bi vê re ji bo çareseriyê fersendeke din pêk bê. Heger ji dil û can bixwazin vê kêşeyê çareser bikin, bi paqijkirina endamên Fethullahê, fersendek dê peyda bibe.

## Gazeteci Yıldıray Oğur: HDP, ezmûneke xirab da

Min nivîsîbû ku ev rewş ku piştî hewldana darbeyê pêk hat, hem ji bo HDP'ê û hem jî ji bo Prosesa Çareseriyê fersendek baş e û divê ev baş bê bikaranîn, divê bi hişyarî tevbigerin. Lê HDP'ê, taybetî ezmûnek xirab da û nikaribû vê fersendê baş bi kar bîne. Li ser 15 Tîrmehê 3 roj derbas bûn, dîsa jî nehat Enqereyê û Demirtaş, ji bo kesên ku wê şevê li dijî darbeyê derketin kolanan, wekî endamên DAIŞ'ê nirxand û wekî endamê rexistinê tevgeriya û axivî. Li gorî min, Prosesa Çareseriyê û vegerîna ser meseyê êdî xeyal in.

Divê HDP'ê roja yekem li dijî darbeyê derbiketa kolanan û ne hewce bû li ber AKP'ê bisekiniya û dikaribû di çarçoweya gotinên xwe de derketa kolanan û li dijî derbayan bisekiniya. HDP'ê dikaribû bi vî awayî ev fersend bi kar bianiya. Li gorî min,hefteyekê piştî darbeyê derketina kolanan, helwesteke samîmî nebû. Doza Roboskê careke din vedibe û berpirsyarê wê dê bên cezakirin. Ev pêngaveke baş e. Lê ev ji bo HDP'ê yan Prosesa Çareseriyê nîne. Ev ji bo paqijkirina rêxistina FETÖ'yê ye.

## Gazeteci Halil Berktay: Hrant Dink, Roboskê û Prosesa Çareseriyê

Dijminiya Cemaatê ya li dijî kurdan tê bîra min. Heger ez vegerim ser pirsên we; serdema qirkirina Uludare/Roboskê 20 Kanun 2011'ê û serdema "3 meh xelas bibe, dê bên xelaskirin" wek hev in. Dîsa di wan salan de doza Hrant Dink tim dirêj dibû; me dît ku dozger, daxwaza ji bo çareserkirina lêpirsînê delîl red dikirin. Nesla min ji bo astengkirina her du dozan zêde matmayî nabin. Xebara me ji "Destê veşartî yê dewletê" hebû; Lê me bawer dikir ku di nav bûrokrasî û leşkerê de têkîliyek heye. Ez guman dikim ku min ev têkilî di prosesa 17-25 Kanûnê 2015'an de piçek ferq kiribû. Taybetî di bûyera Uludere/Roboskê de bêdengiya hikûmetê ewqas diyar bû! Çawa nizanin ku ev îstîxbarata xeletiyê kê peyda kiriye û kê ev fermana xelet daye. Êdî min bawer dikir ku endamên rêxistina Cemaetê di hemû meqaman de cih digrin û dikarin faîlan veşêrin. Kesekî wekî min karê veşartî nizanîbe, nikare vê derxe holê.

Wiha an wisa; Cemaeta Gülen, bi salan e li Tirkiyê bi kiryarê xwe yên cûrbicûr re Hikûmeta AKP'ê û kurdan li hemberê hevdu anîn û kirin dijmenên hevdu. Rêyên prosesa çareseriyê Cemaeta Gülen girtin û ev tesbît nînin. Em vê ji gotinên darbekaran fêm dikin. Helbet em di sermedemeke gelekî dijwar da ne. Lêbelê ez hêvî dikim ku hikûmet dê dest bi vî karî bike. Lê ez bawer nakim ku divê pêngavek wisa biavêje. Ev proses, herçiqas ji bo sazkirina dewletê girîng e, ji bo destpêkirina prosesa çareseriyê jî girîng e.

## Parlementerê CHP'ê Sezgin Tanrıkulu: Ew nikarin xwe ji sûcê Roboskê paqij bikin

Dema ku ev bûyer pêk hat, hikûmetê 24 saetan tu daxuyaniyek neda. Piştre jî ev wekî ku qeza ye, tevgeriyan û hewldan ku vê bûyerê veşêrin. Destnîşan kirin ku fermana bombebaranê hatiye dayîn û ev pêk hatiye. Di bin vê biryara îmzayên Wezîre Parastin û Serokwezîrê wê demê hene. Niha nikarin bibêjin " Em xapandin." Hikûmet hem ji aliyê hiqûqê ve û hem jî ji aliyê wijdanê ve berpirsyarê vê bûyerê ye. Wekî ku di dozên Ergenekon, Balyoz û KCK'yê bavêjin ser Cemaetê û xwe bê sûc derbixin.

## Parlamenterê AKP'ê Orhan Miroğlu: Berpirsyar kî ne, bila bên darizandin

Rêxistina Paralel li Rojhilat û Rojhilata Başûrê gelek aktîv in. Ev carnan bi Roboskê û carnan jî bi operasyonên KCK'ê derdikevin pêşiya me. Heta tê îdiakirin ku tiliyên Cemaetê di bûyera polîsên ku di havîna 2015'an de hatibûn kuştin jî heye. Ez difikirim ku di bûyera Roboskê de jî Cemaet heye. Li gorî fikra min PKK`ê jî di nav vî karî de ye. Ez bawer nakim ku PKK`ê tunebe. Heger ev dosya disa vebe, kî tên darizandin, kî tên girtin, bila bên girtin û bên darizandin. Berpirsyar kî ne, bila bên darizandin.

## Parlementerê AKP'ê Mehmet Metîner: Çi ji destê me were em ê bikin

Bi bûyera Roboskê, komên veşartî yên din nav PKK'ê û komên veşartî yên di nav dewletê de bi hev û din re xwestin pêvajoya çareseriyê xerab bikin. Lewra hê ji nû de vekirina vê dosyayê ji bo dîtina rastiyê pir girîng e. Ez bawer dikim ku eger ew dosya hê ji nû ve were vekirin wê rûyê rastî yên FETÖ û hem jî ji bo endamên di nav PKK'ê de derkevin holê. Dosya ji serdozgeriya Amedê hat şandin dadgeha leşkerî. Me îro dît ku wê dadgeha leşkerî jî di destê FETÖ'yê de ye. Lewma ser bûyerê hat girtin. ji hêla me ve ev qetlîamek e û nayê qebûl kirin. Em wek hikûmet û AK Partî ji bo ku ev dosya ji nû ve were vekirin çi ji destê me bê em ê bikin.

## Şêwirmendê Serokkomar, İhsan Şener: Eger dosya Roboskê ji nû ve were vekirin dê heta dawiyê here

Yên ku di lêpirsîna Roboskê de cîh digirtin hinek ji wan hatine girtin. Di vê merhalê de zanyariyên nû û belge wê derkevin yan na? Ew hê ji nû ve bên nirxandin yan na? ew karê dadê ye. Ez difikirim ku wê carê dosya vebibe dê heta dawiyê here. Lewra em nikarin ji bê hiqûqê re çavên xwe bigrin. Eger ji dil zanyarî û belge veşartibin û ji bo ku em raporek amade bikin tengasî derxistibin, dê ew dozên ku nû bên vekirin dibe ku wan zelal bike. Dibe ku biryarek wek berê bê dayîn lê dibe ku ji dil bi zanebûn hatibe kirin wê demê kê bi zanebûn kiribe dê werin cezakirin. Ew tiştek zelal û net e.

## Parlementerê HDP'ê Ferhat Encü: Heta tawanbar bên darizandin, kirdar hikûmet e

Parlementerê HDP'ê Ferhat Encü behsa ku ji bo hê ji nû ve lêpirsîn were vekirin pêşniyaza lêpirsînê daye meclîsê heta niha 5 sal derbas bûye ku hikûmet gavek neavêtiyê rexne dike û dibêje heta ku kirde neyên darizandin, kirdeyê mezin hikûmet e. Encü got ku, nêzîkatiya malbatên Roboskêyê jî di bin berpirsyariya hikûmetê de ye.

Encü li ser girtina dosyayê hikûmetê berpirsyar nîşan da û got, "Me bi Serokwezîrê wê demê û Serokkomarê anha re, bi malbatan re hevdîtinan kir. Wê demê axaftinek ne rast kir û gotinên wiha gotin, " ji min re ji herêmê agahî nayên ji wê sedemê haya min jê tune." Yanî wê nêrîna pêvajoyê, eger qetlîamê tenê li ser komên veşartî bên kirin wê ne rast be û ew ê xwe bixapînin." Encü anî ziman ku wê demê wan daxwaza girtina hinek leşkeran kiribûn lê nehatibûn girtin lê anha ji sedema hewldana darbeyê hatine girtin. Encü da zanîn ku, kesê ku digot " fermanê min da" anha serbest e û kesê ku tê gotin di qetlîamê de cîh girtiye jî anha hatiye paye kirin.

## 'Em dixwazin pratîkê bibînin'

Encü Serokwezîrê demê ku ji serokê artêşê re spasiyê xwe kiribû jî rexne kir û got, "eger ew xwe rexne bikin, bi gotina "dosyaya Roboskêyê ji nû ve dibe ku were vekirin" nebe. Divê di pratîkê de gava bavêjin." Encü di berdewamiya axaftina xwe de da zanîn ku, " Îro di bin navê rewşa awarte de daxwaza me tê astengkirin. Em her pêncşemê diçin ser mezelan û daxwaza xwe ya dadê tînin ziman. Ew li ser navê rewşa awartê bi gotinên ku "me dixwazin asteng bikin" dibêjin, " dewlet ji wê ne xweş e. Neçin ser mezelan, emê mûdaxale bikin"

Encü di berdewama axaftina xwe de behsa dozên piştî hewldana darbeyê kir û got em di nav xwe de diaxivin ku em jî beşdarî wir bibin. Encü behsa girîngiya ji nû ve vekirina dozê kir.

## Sekreterê giştî yê Veqfa Mafê Mirovan (TİHV) Metin Bakkalcı: Berpirsiyar divê werin darizandin

5 salan berê bi şahîdiya me hemûyan ev qetlîam hat kirin û ji bo qetlîameke wisa aşkere heta niha lêpirsîneke bi hêz nehat kirin. Ez bawer dikim ku eger bihata xwestin wê pir zûtir balafir ji ku rabûn, kê ajot û ew biryar kê da, dê bihata dîtin û yên ku ew qetlîam kirin, mirov dikaribû hîs bikira ku ev kes kî ne. Heta niha lêpirsîneke bi hêz nehatiye kirin. Aniha fermandarên wê demê yên ku berpirsyarê wê bûyerê bûn ne ji sedema Roboskê, ji ber bûyerên din hatine girtin. ji xwe ji bo wê rojê jî biryareke gelek derengmayî ye divê pir zû berpirsyar derketina holê. Di mijara Roboskê de divê yên ku ser lêpirsînê girtine û yên ku berpirsyarê vê qetlîamê ne divê verin darizandin. Lê ev tenê ne bes e divê bi dil û can lêborînek were xwestin û mafên ku hatine telefkirin werin cîh. Me heta niha wisa got û emê berdewam jî bikin.

## Serokê Baroya Wanê Murat Timur: Em hêvî dikin ku hikûmet kiryaran derxe holê

Bendewariya me ew e ku hikûmet ew yên ku kiryarê wê bûyerê bûne derxe holê.

Dawxaz û bendewariya raya giştî jî ew e ku hikûmet ji darêzgeriyê re bibe alîkar. Lewra eger ku desthilatdara siyasî di dozên polîtîk de îradeya xwe nikaribe nîşan bide, ne mimkin e ku kiryar derkevin holê. Eger ku desthilatdara siyasî îradeya xwe karibe nîşan bide em bawer dikin ku wê berpirsyar derkevin û derketina kiryarên wê bûyerê jî pir zor nîne. Dema ku mirov li dîroka Tirkiyeyê dinhêre wek Zîlan, Dêrsim, Roboskê gelek qetlîam hatine kirin ancax sedema ku bingeha wan qetlîaman nayê lêpirsîn bingehên qetlîamên nû vedike. Divê ji bo ku civaka Tirkiyê pêşerojeke xweş û hevpar derxê holê, lazime ku bi paşeroja xwe re rûbirû bimîne.

**Serokê Baroya Şirnexê Nuşirevan Elçi: Divê dosya ji nûh ve bê vekirin**

Ez anha nizanim ew dê çi bikin lê divê ev dosya misoger ji nû ve bê vekirin. Lewra 34 kesên ku hatine kuştin û 19 kes ji wan zarok bûn. Em ji wê demê heta niha dibêjin di qetlîameke wiha de girtina dosyaya lêpirsînê ne raste û ne mimkûn e. Di dema borî de yên ku dozgeriya Amedê dikirin, yên dozgeriya leşkerî dikirin, ji pîlotê ku di bûyerê de hebû heta fermandarê qereqola Roboskêyê herkes girtî ye. Ji ber vê yekê jî divê zûtir dosya were vekirin û kiryaran derxin ber dadê û cezayên wan were dayîn. Emê li ser vê mijarê israra xwe bidomînin.

**Parêzerê dosyaya Roboskêyê Mesut Gerez: Wan kesan karên ji derbeyê xirabtir kirine**

Li gor min hikûmet qetlîama wê demê nepirse lê aniha hinek kesên ku di qetlîamê de cîh girtine ji ber hinek sûcên din hatine girtin û hikûmet ji hêlekê ve ji bo ji wê dosyayê bifilite wan kesan bi wê dosyayê ve girêdide û dixwaze berpirsyariya xwe li ser wan bike. Ji roja pêşîn heta niha me fêm kir ku wê berpirsyarên wê bûyerê wê dernekevin ber dozgeriyê û neyên darizandin. Lêwma em dizanin ku li ser wê dosyayê lêpirsîneke bi bandor wê neyê kirin. Îro hinek kesên ku tê gotin di naw hewldana darbeyê de cîh girtine ku hatin girtin û piştre jî bi wê dosyayê re hatin binavkirin nîşan dide ku lêpirsîneke bi bandor nehatiye kirin û hewldanek ku li dijî wan kesên ku di nav hewldana darbeyê de cîh girtine li pêşberî raya giştî hê xirabtir nîşan bidin, heye û dibêjin wan kesan karên ji darbeyan xirabtir kirine. Em ji xwe wiya dizanin ku wan, tiştên ji darbeyê xirabtir kirine.

**Parêzerê dosyaya Roboskêyê Mehmet Emin Aktar: Hikûmet bixwaze dikare kiryaran derxe holê**

Eger hikûmet bixwaze dikare hemû kiryarên bûyerê derxe holê. Lewra cihê bûyerê aşkere ye û kesên ku kiryarên wê qetlîamê ne ji yên binî heta serfermandariya artêşê bi biryarêk hatiye kirin wisa tişteke ne diyar tune. Heke li serî binêrin wê kiryarê derxin holê û divê di vê mijarê de xwedî îrade bin. 5 sal in derbas bû lê hê gavekî erênî nehat avêtin.

**Serokê Komeleya Mafê Mirovan a Şaxa Amedê Racî Bîlîcî: Divê hikûmet bi Roboskê re rû bi rû be**

Me berê jî gotibû divê hikûmet bi qetlîama Roboskê re rûbirû bimîne. Hikûmet qetlîama Roboskê kî û çawa kirine ji herî jor heta burokratên en biçûk dizanê û bi çi armancê kirine jî dizane. Divê ev bûyer bi berfireh were daxuyandin û dewlet bi qetlîama Roboskê rûbirû bibe. Yên ku di wê bûyerê de cîh girtine ji burokratên leşkerî , yên sivîl û leşkera jî bi vê bingehê bên darizandin. Divê hikûmet bi Roboskê re here ser bûyerên li erdingariya kurdan hatine kirin wek kujerên ne diyar, qetlîam û di demê anha de bajarên ku hatin wêrankirin û wan zelal bike. Hikûmet ji hewldana darbeyê divê ji xwe re îstîfade bike û divê komên ku derdikevin dijî dadê werin tespît kirin û bên darizandin. Eger ku ew nebe û polîtîkayên xwe yên înkarê bidomîne, bûyerên ku li erdingariya kurdan qewimîne dernexe holê wê tû guherîn çê nebe. Ew fersendeke ye. Bi bingeha Roboskê dikarin her tiştî derxin holê. Dewlet wan a dizane û di arşîva dewletê de her tişt hene. Divê hikûmet bi Roboskê re bi tevahiya bûyeran re rûbirû bibe.

**Mesut Tek Serokê PSK'ê: Erdoğan bo Roboskê soz dabû**

Eger dewletê bixwesta ku bi qetlîama Roboskê re rûbirû bimîne li benda darbeyê nedisekinî. Divê em ji bîr nekin ku dema qetlîama Roboskê çêbû Serokvezîrê wê demê û Serokkomarê aniha Erdoğan digot ku ez nahêlim ew qetliam li delhîzên Ankarayê winda bibe. Lê di nav demê de wî jî gotinên xwe ji bîr kirin û biryarên leşkerên di nav qetlîama Roboskê de cîh girtine ku werin sucdarkirin û cîh ji lêpirsînê re tune, erê kir. Wî bi xwe çavên xwe girtin û qetlîma Roboskê di bin delhîzên Enkarayê de winda bû. Çanda dewleta tirkan ya ku bi sûcên xwe re rûbirû bimîne tune. Eger ew hebûna Zîlan, Dêrsim, Roboskê, valakirina gundan, li Çelê û Şirnaxê ku bi balefiran gundî hatin kuştin re dê rûbirû bimana. Dewlet li ser înkarkirina kurdan û asîmîlekirina wan hatiye avakirinê. Aniha dest bi girtinan kirine ev kêmîneyek e, dixwazin yên ku di hewldana darbeyê de cîh girtine her sûcî li wan bar bikin.

**Serokê PAK'ê Mustafa Özçelik: Roboskî pêngava serdemeke nû bû**

Ji bo ku dewlet bi rastiyê xwe re rû bir û bimîne Roboskê pêngava serdemeke nû bû. Lê gelek Roboskê pêk hatine. Sala borî nêzî 15 bajar û navçeyên me hatin wêrankirin, bi sed hezaran mirovên me ji cîh û warê xwe qetiyan û bi hezaran kuştî û birîndar hene. Divê dewlet bi wî rê rûbirû bimîne, çawa bû, kî kiryarê derxe hole. Helbet zelalkirina Roboskê di wê wateyê de ew dê bibe serdemeke nû. Me jî wek PAK'ê ji Serokkomar, hikûmet û berpirsyarên dewletê re daxwazeke zelal kie, me got em qetlîama Roboskê derxin holê û bila wê hewldana darbeyê ku bi ser neket bila ji Tirkiye û Kurdistanê re bibe destpêkeke nû. Em bangawaziya xwe dikin, bila qetlîama Roboskê zelal bikin û bi wî re rastiya şer û pevçûnên ku li Kurdistanê didomin derkeve holê û şer û pevçûn biqedin. Serokkomar, Serokwezîr û berpirsyarên dewletê çawa li berpirsyarê qetlîama Roboskê xwedî derdiketin tê bîra me.

**Serokê PDK Bakûr Sertaç Bucak: Hêvî dikim ku hikûmet li ser Roboskê bisekine**

Ez hêvî dikim ku hikûmet li ser qetlîama Roboskê bisekine û hewl bide ku qetlîamê zelal bike. Ji bo wê jî divê mirov bisekine wê baş be lê dereng be jî ne girîng e. Em bi tevahî li ser navê qurbaniyên Roboskê dixwazin û hêvî dikin ku hê zûhtir kiryar derkevin holê û em ji bo wî disekinin. Piştî hewldana darbeyê gelek tişt derdikevin holê, mirov dikeve nav fikaran û dibêje lê gelo ew berê nedihatin zanîn. Aniha gelek tiştên ku li ser Roboskê tên gotin hene eger aniha li ser were sekinandin û bingeha qetlîamê derxin holê wê demê em dikarin nêrînên di cîh de bikin. Eger civak di wê mijarê de bi tevahî hesasiyetek nîşan bidana, dê ew bûyer bihata zelalkirin. Sedema ku bûyer nehatiye jibîrkirin jî berxwedana malbatên qurbaniyên wê qetlîamê ye.

**Serokê ÖSP'ê Sinan Çiftyürek: Divê hikûmet û dewlet li ser meseleyê rawestin**

Divê tevgera netewiya kurd ji nêzîkatiyeke ku her tiştî davêje ser rêxistina FETÖ'yê dûr be. Ji dema Osmaniyan heta niha dewlet kiryarê xwe yê qirêjî û xebatên xwe yên ne xweş, kesên ku ji xwe dûr xistiyê berpirsyar nîşan daye û xwe paqij nîşan daye. Eger em bêjin tiştên ku li Kurdistanê qewimîne tevahiya wan rêxistina Fethullahî çêkirine, wê demê em dê xwe bixapînin. Berpirsyar di wê mijarê de dewlet e û desthilatdariya siyasî ye. Di dema ku qetlîama Roboskêyê qewimî, pileya leşkerekî hat zêdekirin û peyvireke mezin danê. Ji wê sedemê ez bawer nakim ku bûyer were zelal kirin. Divê ew nebe xapandineke ku hinek generalên ku di nav rêxistina FETÖ de cîh digrin hatine girtin û her tiştî li wan bar bikin û bêjin wan kiriye û berpirsyarên dewlet û hikûmetê bê sûc nîşan bidin.







# Li bereya Sûrî tiştek nû nîne!

Murat Özdemir



Li Rojavayê Kurdistanê operasyona rizgarkirina Menbîcê, ji aliyê Meclîsa Leşkerî ya Menbîcê ve 1'ê Hezîranê hatibû destpêkirin, berdewam dike. Di encama operasyona ku balafirên hêzên hevpeymana navdewletî jî piştgiriyê didinê de, ji sedî 90'ê bajar hatiye rizgarkirin. Hefteya borî jî hêzên kurdî çerxerêya El-Cezîra, Suk El-Hal û gelek cihên stratejîk bi dest ve anîn û dorpêça li ser çekdarên DAIŞ'ê teng kirin. Herwiha Hêzên Meclîsa Leşkerî yên ji bo paqijkirina Çerxeriya Beta ji DAIŞ'ê ku li navenda bajêr e û xwedî cihekî stratejîk e, operasyoneke berfireh dan destpêkirin. Hefteya borî 2 hezar sivîlên din jî ji bajar ber bi cihên ewle ve hatin vegûhestin. Meclîsa Leşkerî ya Menbicê ragihand ku ew ê di demeke nêzîk de mizginiyê bidin xelkê û bajêr ji destê DAIŞ'ê derxin.

**Kanton nêzî hev dibin**

Li gor zanyariyên berdest operasyon wê di demekî kirt de bi dawî bibe û ji bo pêkvegirêdana kantonên kurdî wê pênagevek girîng bê avêtin. Menbîc di navbera kantonên Kobanê û Efrînê de cih digire û bi rizgarkirina bajêr hem ji bo şikandina dorpêça li ser Efrînê û hem jî ji bo beralîkirina xeterên li ser herêmên kurdî girîng e. Herwiha ji bo çarenûsa DAIŞ'ê jî Menbîc girîng e û kontrolkirina bajêr, wê ji bo têkşikandina DAIŞ'ê li Rojava bibe destpêk.

**Qamişlo birînên xwe dipêçe**

Li bajarê Qamişlo, hefteya borî li dijî xelkê sivîl ji hêla DAIŞ'ê ve bi kamyonên bombebarkirî du êrişên xwekujî pêk hatibûn û di encamê de zêdetirî 50 kurdên sivîl miribûn û nêzî 200 kes jî birîndar bûbûn, birînên xwe dipêçe. Li bajar tevdîrên ewlekariyê hatine zêdekirin, lêbelê hê jî destûr nehatiye dayîn ku Pêşmergeyên Roj cihê xwe yê di parastina xaka xwe de bigirin.

Piştî teqînan mijara lawazbûna asayîşê hatibû rojevê û vegera Pêşmergên Roj dîsa weke pêdiviyek girîng hatibû bilêvkirin. Lêbelê rayedarên PYD'ê eşkere dikin ku ew destûrê nadin Pêşmerge derbas bibin. Lêbelê milîsên bi ser rejîma Esad li bajêr in ku dema teqînan rû da balafirên rejîmê li ser Qamişlo difiriyan. Piştî teqînan hêviya xelkê kurd zêe bûbû ku Pêşmergê Roj jî vegere û hêzên siyasî û leşkerî yên Rojava yekgirtina xwe ava bikin. Ji ber nêzîkahî û helwesta hizbên kurdî, li Rojava xelkê kurd jî bi gef, xeter û komkujiyan re rû bir û ye.

**Sihanok Dibo: DYA û Rûsya li gor berjewendiyên xwe tevdigerin**

Endamê Komîteya Navendî yê Partiya Yekitiya Demokratîk (PYD) Sihanok Dibo li ser nêzîkbûna Rûsya û DYA'yê li Sûriyê, geşedanên leşkerî û siyasî yên li Rojava û herêmê ji BasNûçê'yê re axivî. Dibo ragihand ku DYA û Rûsya her tim di nava yekrêziyekê de bûn. Herwiha diyar kir ku bêyî kurd qeyrana li Sûriyê çareser nabe û divê kurd di civînên ji bo çareserkirina şerê navxweyî tên li darxistin, werin vexwendin: "Em dibêjin ev nêrîna ku dibêjin herdu alî li ser kêşeya Sûriyê disekinin, ne hevrêzî di navbera DYA û Rûsyayê de heye. Lê em dikarin bêjin ku pêşketinên leşkerî de çi aliyê rejîmê be an çi aliyê opozîsyonê be, wê demê dixwazin hevsengiyekê di navbera aliyan de çêke ku aliyek bi ser ya din nekeve. Wê çaxê hemû aliyên kêşeya Sûriyê qebûl bikin, çareseriya ku hêzên navdewletî û taybet Rûsya û DYA ku gorî berjewendiyên xwe birêve dibin."

**"Qeyrana Sûriyê bi gelek meseleyan ve girêdayî ye"**

Li gor Dîbo, qeyrana Sûriyê bi gelek meseleyan ve girêdayî ye. Bi kêşeyên navnetewî çi Ûkrayna, çi gaz û çi petrol. Ew li ser projeya xwe disekinin ku bibe bersiva hemû guhertinên li Rojhilata Navîn: "Rêxistinkirina civakê jî gelek girîng e. Formûla çareseriya kêşeya Sûriyê du aliyê wê hene. Aliyek guhertinek demokratîk yanê Sûriye ji sîstema navendî rizgar bibe. Bêyî kurd îro nikarin tu çareseriyan pêk bînin. Çiqasî hewl bidin û projeyan çêbikin jî ji bo hilweşandina sîstema li Rojava ew bi ser nakevin."

**"Eger kur neyên vexwendin Cenevre bê wate ye"**

Dibo eşkere kir ku eger kurd di civînê de amade nebin tu encam jê dernakeve û wiha dewam kir: "Nûnerên kurd ên rasteqîn tê de amade nebin ev tê wê wateyê ku vala yee. Tu çareseriyê jî pêk nayne. Ji ber ku ji Cenevre yek an heta ya sisiyan tu encam jê derneket. Ji ber ku beşeke girîng bûye xwedî statu, amade nebin wê çaxê ev arîşe çareser nabe."

**"Heta niha tu kesî peywendî bi me re nekiriye"**

Dibo herwiha got ku herkes dibêje ku divê divê nûnerên Rêvebereya Xweser di hevdîtinan de amade bibin û wiha dirêjî da axaftina xwe: "Lê heta niha vexwendinek çênebû ye û tu kesê xwe negihandiye me. Em xwedî proje ne, xwedî bandor in di qada navnetewî û Rojhilata Navîn de. Em bûne şirîkekî stratejîk yê hevpeyman a navdewletî a li dijî terorîzmê. Em xebata xwe xurt dikin ji bona em amade bibin û ev proje bi ser bikeve."

**"Kiryar ne tenê DAIŞ'ê"**

Sihanok Dibo li ser komkujiya Qamişlo jî diyar kir ku kiryar ne tenê DAIŞ e û herwiha rexneyên li dijî asayîşê jî red kirin û wiha got, "Kiryarên teqîna Qamişlo ne tenê DAIŞ e, em wisa nabînin. Rejîmên desthiladar yên li herêmê ku bi wan ve girêdayî ne û serkeftina projeya Rojava, jiyana hevbeş, wekhevî li dijî xwe dibînin em wan tawanbar dikin. Destê wan di vê komkujiyê de heye. Rexneyên li ser asayîşê jî em asayî û normal nabînin. Ev rexneyên siyasî ne û bi vî awayî dixwazin hêzên din yên leşkerî derbas bikin. Ew kesên ku van tiştan dibêjin, teqînên li Almanya, Amerîka, Fransa û welatên din çêbûne wê çaxê divê bo van jî ev bên gotin û bila biçin wê derê. Ev gotineke şaş e. Ev li dijî berjewendiyên statuya kurda ne û mebeseta wan ew e vê projê hilweşînin. Em teqez dikin û dibêjin ev hewldanên wan wê têk biçin."

**Şivan Cezîrî: Paşeroja Rojava û Sûriyê ne zelal e**

Berpirsê Ofîsa ENKS yê Şaxa Tirkiyê Şivan Cezîrî jî di derbarê geşedanên dawîn yên li Rojavayê Kurdistanê ji BasNûçe'yê re axivî û got, "Kêşeya Sûriyê ji destê xelkê Sûriyê derketiye. Ne Rojava û ne jî derveyî Rojava ne di destê xelkê herêmê de ne û herwiha ne di destê rejîmê de ye jî. DYA û Rûsya di navbera xwe de plana çê dikin û ka wê çibikin ew vê yekê dizanin, ji wan pê ve tu kes nizane. Dewletên wek Fransa, Brîtanya, Tirkiye û yên din ku destê xwe danîbûn ser meselê ew jî li derve jî man e û ew Jî nizanin. DYA û Rûsya projeyên xwe amade dikin û tînin ser masê û ji wan re dibêjin em ê van tiştan bikin. Bandora wan dewletan jî şikestiye. Em nizanin ka amerîkî û rûsî di bin masê de çi rêkeftin pêk anîne. Ji ber wê yekê, pêşeroj û rewşa Rojava û Sûriyê ne zelal e."

**"Dewleteke navendî êdî ne pêkan e"**

Cezîrî li ser helwesta opozîsyona Sûriyê ya li hemberî kurdan jî got, "ENKS'ê beriya ku bikeve nav opozîsyonê rêkeftin pêk anî bi îtîlafê re. Em li ser wê belge û rêkeftinê danûstendinan pêk tînin. Projeyên me hene. Em federaliyê dixwazin û me ji wan re jî got ku daxwaza me ev e. Nêrîn û sekna me neguheriye û karê me berdewam dike. Federalî di nava opozîsyonê de jî niqaşkirin. Niha xelkê Îdlîbê nikarin biçin Helebê, yên li Helebê nikarin bê Rojava, her komekê deverekê kiriye bin deste xwe de û nahêle kesekî din derbas bibe. Selefî û cîhadî her cure komên çekdar di Sûriyê de ne. Dewleteke navendî êdî ne pêkan e. Ji ber wê yekê di serî de em daxwaz û doza Sûriyeke federal dikin. Me ev projeya xwe daye De Mistura jî opozîsyonê jî û aliyên civînê Cenevrê jî, li her derê em vê yekê tînin ziman."

**"Tirkiye destê opozîsyonê bernade"**

Şivan Cezîrî axaftina xwe wiha domand: "Opozîsyona Sûriyê ji gelek koman pêk tê û her yek xwedî daxwazên cuda ne. Em weke kurd di cîvinan de amade dibin. Niha tirkmen, aşurî, suryan û komên din di nava opozîsyonê de ne. Hemû ne xwedî nêrînekê ne. Dema me rêkeftina xwe bi opozîsyonê re çêkir piraniya wan qebûl kir. Lê hinek komên şovenîst hene ku li dij derdikevin. Nêrîna wan jî digûhere"

Cezîrî di dawiya axaftina xwe de li ser nêzîkbûna Tirkiyê û rejîma Sûriyê jî ragihand ku Tirkiye ev nêzî 6 sal in li kêleka şoreşa Sûriyê sekiniye û ku di helwestan de nermbûnek çêbibe lê piştî vê demê jî nêrîna xwe naguherîne û naçe bi Esad re bisekine ku nêzî 400-500 hezar xelk kuştiye.

**Li Helebê dorpêç û pevçûnên dijwar**

Li hêla din şerê li bajarê Helebê berdewam dike. Piştî ku rejîma Sûriyê bi piştevaniya firokeyên rûsî Heleb xist bin dorpêçê û rê û cihên stratejîk yên bajar girtin, komên çekdar yên ser bi opozîsyonê ve jî hefteya borî ji bo şikandina dorpêça li ser bajêr dest bi operasyoneke berfireh kirin. Lêbelê dorpêça li ser bajar nehatiye şikandin û şer û pevçûnên li navenda bajar û derdora wê bi dijwarî berdewam dikin û hêzên ku hesaban li ser şerê Sûriyê dikin çavê xwe zivirandine Helebê.

Herwiha YPG'ê jî ku taxa Şêx Meqsûdê kontrol dike li ser geşedanên li herêmê û nêzîkbûna Artêşa Sûriyê ber bi taxê ve daxuyaniyek belav kir û destnîşan kir ku ew wan deverên di bin kontrola wan de ne bernadin.

Ji aliyê din ve tê payîn ku di vê mehê de Rûsya û Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA) li ser qeyrana Sûriyê planekî eşkere bikin. Li gor vê planê herdu alî wê li Sûriyê bi awayekî kordîneyî tevbigerin.

# Goran ji bo rapirsiyê nerm dibe!

Mehmet Salih Batırhan

Rawêjkarê Dîwana Serokatiyê ya RHK'ê Dr. Fûad Husên ji bo hemahengiya derbarê rapirsiya serxwebûnê de bi partiyên siyasî re, dest bi tûra dûyem ya hevdîtinan kir. Heman kat nûnerê taybetî yê Serokê RHK'ê Dr. Husên hefteya borî li ser daxwaz û banga Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî bi partiyan re li ser vê mijarê civiya bû. Di tûra yekem de ji bilî Tevgera Goranê hemû partî û layanên siyasî yên Kurdistanê bê şert û merc piştgiriya xwe bo rapirsî û serxwebûnê diyar kiribûn. Serokê Goranê Newşîrwan Mistefa, ji bo piştgiriya rapirsiyê şertên vegera Serokê Parlamanê yê Kevn û wezîrên Goranê danîbû pêşiya Dr. Husên.

Piştî ku Dr. Fûad Husên, daxwaz û pêşniyazên partiyan vergirt û li gel Barzanî wan nirixand, destbi tura dyem kir. Dr. Husên di nava heftê de bi Emîrê Partiya Komeleya Îslamî ya Kurdistanê (Komel) Elî Bapîr re hat bal hev. Tê çaverêkirin ku Dr. Husên di nava hefteyê derbasî Silêmaniyê bibe û li wê derê di maweyê 3–4 rojan de bi partiyên siyasî re civînan pêk bîne.

Fûad Husên hefteya borî bi rêberên partiyên Yekitiya Niştimaniya Kurdistanê (YNK), Partiya Demokratîk a Kurdistanê (PDK), Tevgera Goranê, Partiya Yekitiya Îslamiya Kurdistanê (Yekgirtû), Partiya Îslamî ya Kurdistanê (Komel), Partiya Demokratîk a Kurdistanê ya Sosyalîst (PDKS) hevdîtin pêk anîbûn û daxwazkiribû ku qeyrana siyasî were çareserkirin û helwesteke hevpar li ser referandûma serxwebûn bê nîşandan. Ji bilî Tevgera Goranê, hemû partiyên siyasî ragihandibûn ku ji bo çareserkirina qeyranê û pêkanîna referandûma serxwebûnê amade ne ku berpirsyariyê hilbidin. Rêberê Tevgera Goranê Mistefa mercên vekirina parlamentoyê û vegera Serokê Parlamentoya RHK'ê bo Hewlêrê danîbûn ber Dr. Husên.

Çavkaniyên li RHK'ê diyar dikin ku niha Rêberê Tevgera Goranê Newşîrwan Mistefa piştî dîdara yekem a bi Fûad Husên re di helwesta xwe de nerm bûye û ji şertê vegera Serokê Parlamentoya RHK'ê Yusif Mihamed bo ser peywîrê vegeriya ye. Herwiha Serokê Parlamentoyê Yusif Mihamed jî ji medyayê re got, eger pêwîst bike, ew ê dev ji israra vegera parlamenê berde.

Tê destnîşan kir ku di ajandaya Husên de ku li ser navê Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî bi partiyên siyasî re hevdîtinan pêk tîne, mijarên duristkirina îstîqrara sîyasî û xebeta partiyên siyasî bo pêkanîna referandûma serxwebûnê hene.

Li hêla din tê ragihandin ku Bexda jî erênî nêzikî hewldanên RHK'ê yên ji bo serxwebûnê dibe. Wezîrê Bergiriyê yê Iraqê Xalîd Ûbeydî li ser meseleya serxwebûna RHK'ê û helwesta Bexdayê aşkere kir ku mijara serxwebûnê, meseleya navxweyî ya RHK'ê ye. Herwiha Ûbeydî diyar kir ku mijara serxwebûnê meseleyeke siyasî ye û divê pêngavên ciddî werin avêtin.



Di vê navberê de ji bo derxistina DAIŞ'ê ji Mûsilê hevdîtin û hevkariya bi Hevpeymana Navdewletî re jî berdewam dikin. Li gor çavkaniyên leşkerî yên RHK'ê Operasyona Mûsilê dê demekî kirt de destpê bike. Rayedarên NY û DYA'yê di nava heftê de ji bo gotûbêjkirina rizgarkirina Mûsilê serdana Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî kirin. Herwiha Wezareta Parastinê ya Kanadayê jî bo piştevaniya Hêzên Pêşmerge alîkariyên nû şandine.

**Amîna Zikrî (Parlamentera PDK'ê): Deriyê diyalogê ji Goranê re vekiriye**

Parlamentera Partiya Demokrata Kurdistanê (PDK) Amîna Zîkrî, di derbarê tura duyem ya hevdîtinên Berdevkê Dîwana Serokatiyê yê RHK'ê Fûad Husên ji BasNûçe'yê re nirxand. Zîkrî ragihand ku Dr. Fûad Husên piştî banga Serokê RHK'ê ya bo partiyên siyasî ji bo diyalog û referandûmê bi partiyan re hat bal hev û diyar kir ku hevdîtinên ku 2 hefte li paş xwe hiştin, hewaya siyasî ya li RHK'ê nerm kiriye. Zîkrî destnîşan kir ku RHK ji proseyekî hesas re derbas dibe û ragihand ku divê hemû partiyên siyasî ji bo serxwebûnê kar bikin û wiha axivî: "Em di proseyeke hesas re derbas dibin. Divê hemû partiyên siyasî ji bo serxwebûnê bixebitin. Di destê me de fersendek heye. Me sûd ji hevgirtina bi Iraqê re ne dît. Berovajî wê gelek komkujî bi serê me de hatin. Ji bo ku dîsa em rastî van komkujiyan neyên, dema ku em dewleta xwe rabigihînin hatiye."

Zîkrî da zanîn ku li Rojhilata Navîn geşedanên nû rû didin û diyar kir ku şerên mezhebî yên li herêmê ji bo RHK'ê cihê talûkê ne. Zîkrî herwiha anî ziman ku em hêvî dikin ku hewldanên Fûad Husên dê encam bidin. Amîne Zîkrî di dewma axaftina xwe de li ser arîşeyên PDK'ê yên bi Goranê re jî got, "PDK'ê her tim ji bo çareserkirina arîşeyên bi Goranê re îrade nîşan daye. PDK'ê gelek caran bang li hemû partiyên siyasî kiriye. PDK'ê her tim derê xwe yê diyalogê vekirî hiştiye û deriyê dyalogê niha ji Goranê re vekiriye. Dikarin hemû arîşeyan bi riya diyalogê çareser bikin."

**Şêrko Mihemed Emîn (Parlamenterê Goranê): Em piştgiriyê dide serxwebûnê**

Parlamenterê Tevgera Goranê yê Parlamentoya Kurdistanê Şêrko Mihemed Emîn jî helwesta Goranê ya di hevdîtinan bi Dr. Fûad Husên re ji BasNûçe'yê re nirxand. Mihemed Emîn şert û mercên Goranê dûbare kir û ragihand ku Goranê daxwaza guherîna sîstema Serokatiya RHK'ê dike û daxwaza vegera Serokê Parlamentoya Kurdistanê Yusif Mihamed ya Hewlêrê dike: "Em hevdîtin û hewldanên birêz Fûad Husên yên ji bo diyalogê girîng û hêja dibînin. Lêbelê heta ku sîstema serokatiyê negûhere û Serokê Parlamentoya Kurdistanê venegere Hewlêrê, Goran nakeve riyek nû. Em ji birayên xwe yên PDK'yî hêvî dikin ku bi berpirsiyarî tevbigerin." Emîn diyar kir ku Goranê pêwendiyên baş bi YNK'ê re danî ne û ji bo çareserkirina kêşeyan di nava hewldanan de ne û herdu partî dixwazin bi PDK'ê re jî pêwendiyên baş dênin.



Mihmed Emîn li ser helwesta Goranê ya li hemberî mijara serxwebûna Kurdistanê jî aşkere kir ku ew bi awayekî zelal piştgiriyê dide referandûma serxwebûnê. Emîn ragihand ku dema serxwebûna RHK'ê hatiye û got, "Goran, serxwebûnê weke mafekî xelkê Kurdistanê dibîne û bi eşkere piştgiriyê dide vê proseyê. Helwesta me zelal û teqez e. Dema serxwebûna xelkê me hatiye. Lêbelê kêşeyên navxweyî divê pêşiyê werin çareserkirin. Beriya her tiştî divê em xwedî îradeyeke hevpar bin û parlamentoya xwe vekin."

**Rojnameger Selam Abdullah: Divê referandûm neyê paşxistin**

Midûrê Giştî yê Rojnameya Xebatê Selam Abdullah hevdîtinên Dr. Husên yên bi partiyên siyasî re ji BasNûçe'yê re nirxand. Abdullah ragihand ku hevdîtinên ewil ji çapemeniyê re girtî pêk hatin û got ku piştî hevdîtinan zanyarî nedan çapemeniyê, lêbelê Fûsd Husên, ji hevdîtinan encamên girîng bidest xistin.Abdullah destnîşan kir ku ew ji tura duyem ya hevdîtinan gelek bi hêviye û diyar kir ku hemû partiyên siyasî ji bo çareserkirina kêşeyan û pêkanîna referandûma serxwebûnê dê helweseteke hevbeş nîşan bidin. Abdullah herwiha amaje bi wê yekê kir ku êdî xelkê kurd ji arîşe û pevçûnên di navbera partiyên siyasî yên ji bo berjewendiyan xwe, aciz bûn e û wiha dirêjî da axaftina xwe: "Ez hêvî dikim partiyên siyasî li hev bên. Xelk ji pevçûnên berjewendiyan yên di navbera partiyên siyasî aciz bûye. Eger partiyên siyasî lihev nekin, dibe ku li Kurdistanê arîşeyên mezintir derkevin. Divê partiyên siyasî bi awayekî zelal piştgiriyê bidinFûad Husên û ji bo di demekî nêz de referandûma serxwebûnê pêk were, helwesteke hevpar nîşan bidin."

Abdullah herwiha da zanîn ku şerê li dijî DAIŞ'ê û bêîstiqrarî gefên ciddî li ser RHK'ê ava dike û got ku divê partiyên siyasî hem ji bo şerê li dijî DAIŞ'ê û duristkirin û parastina îstîqrara siyasî li hev bikin.



## Amerîka:
# Bê Pêşmerge Operasyona Mûsilê nabe

Serokê RHK'ê Barzanî, hefta borî ligel Serfermandarê Artêşa Dewletên Yekgirtî yê Amerîkayê û Nûnerê Sekretêrê Giştî yê NY'yê li Iraqê û şanda li wan re hevdîtinan pêk anî. Şanda leşkerî ya Amerîkayê ku bi mebesta rizgarkirina Operasyona Mûsilê serdana Barzanî kir, dûpat kir ku Mûsil bê Pêşmerge nayê rizgarkirin û tevlîbûna hêzên ku ya vê operasyonê gelek girîng e. Barzanî ji ji nûnerên DYA û NY'ê re ragihand ku divê xelkê wîlayeta Nînowayê derbarê çarenûsa xwe de xwedî biryar bin.



Li daxuyaniya ofîsa Serokatiya RHK'ê, di hevdîtinê de mijarên ku Wezîrên Karên Derve yên welatên hevpeymanê li civîna Washingtonê û rûniştina New Yorkê de gotûnêjkiribûn, hatin ser masê. Di hevîdtinê de hat destnîşankirin ku divê encamên Operasyona Mûsilê yên siyasî, aborî û mirovî ji hemû aliyan ve werin nirxandin û ji bo karesateke nû rû nede di nava hevkarî û hemahengiyê de bin.

Di hevdîtina ku gihandina alîkariyên mirovî bo penaberan jî hat gotûbêjkirin de, Nûnerê NY'yê di derbarê proje û planên xwe yên ji bo penaberan eşkere kirin. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî jî hesasiyetên RHK'ê yên li ser Operasyona Mûsilê anîn ziman û bi taybet jî ji bo ewlekariya pêkhateyên olî û etnîkî yên Wîlayeta Nînowayê, diyar kir ku pêdivî bi rêkeftineke berfireh heye. Endîşe hene ku piştî destpêka tevgera rizgarkirina Mûsilê ji destê DAİŞ'ê gelek penaber peyda bibin û karesateke mirovî peyda bibe.

**Divê gel li ser pêşeroja Nînowayê xwedî biryar be**

Serokê RHK'ê Barzanî jî ragihand ku divê nêrînên xelkê ku ji herêma Nînowayê derketine jî werin wergirtin û bal kişand ser beşdarbûna xelkên li herêmê bo vê prosesê. Barzanî herwiha got ku deriyê wan ji herkêsê koçber re vekiriye û da zanîn ku ew alîkariyên ku civaka anvdewletî ji penaberan re dişîne, ji hêla hikûmeta iraqê ve tên astengkirin. Barzanî herwiha diyar kir ku di vê di vê mijarê de hinek gav werin avêtin.

**Barzanî li gel Serfermandarê DYA'yê civiya**

Mesûd Barzanî di nava hefteyê de li Hewlêrê pêşwaziya Serfermandarê Artêşa Iraqê General Joseph Dunford û şanda ligel kir.

Li gorî daxuyaniya ofîsa Serokatiya Herêma Kurdistanê, di hevdîtina ku li Selahadînê pêk hat de, mijarên derxistina Mûsilê ji destê DAIŞ'ê û piştevaniya di navbera hêzên hevpeyman û Pêşmerge hatin gotûbêjkirin.

Serfermandarê Artêşa DYA'yê Dunford, di derbarê planên leşkerî yên li Sûriyê û Iraqê d Serok Barzanî agahdar kir û destnîşan kir ku welatê wî di şerê li dijî DAIŞ'ê de wê berdewam alîkariya Pêşmerge bike. Dunford herwiha diyar kir ku li gorî hêzên hevpeymana navdewletî di wê baweriyê de ne ku bêyî beşdarbûna Barzanî û Pêşmerge, Operasyona Mûsilê bi ser nakeve.

Mesûd Barzanî jî li ser planê rizgarkirina Mûsilê, şanda leşkerî ya DYA'ê bi awayekî berfireh agahdar kir. Barzanî balkişand ser girîngiya ser rêkeftineke siyasî bo qonaxa piştî DAIŞ'ê û amaje bi wê yekê jî kri ku ev ji operasyon leşkerî girîngtir e.

**General Gerdî: Pêşmerge dê serkêşiya operasyona Mûsilê bike**

Fermandarê Bereya Mexmûrê General Ehmed Gerdî jî di derbarê şerê li dijî DAIŞ'ê û Operasyona Mûsilê ku amadekariyên wê tên kirin, ji BasNûçe'yê re ragihand ku DAIŞ'ê herî dawîn êrişî bîrên petrolê yên li Kerkûkê kiriye û destnîşan kir ku Pêşmerge êrişên wan têkbirine û bi dehan çekdarên rêxistina DAIŞ'ê jî hatin kuştin. General Gerdî diyar kir ku metirsiya DAIŞ'ê li ser xaka Kurdistanê nema ye û got ku tenê li Şengalê çendek gund di destê rêxistinên de ne û jibilî wê yekê hemû axa Kurdistanê ji destê DAIŞ'ê hatiye derxistin.

Gerdî li ser Operasyona Mûsilê jî eşkere kir: "Bi Hevpeymana Navdewletî re xebat û amadekariyên me yên hevbeş hene. Kontrolkirina Mûsilê ji bo ewlekariya Kurdistanê jî gelekî girîng e. Hebûna DAIŞ'ê ya li Mûsilê gefan li ser xaka me ava dike ji bo dawîkirina talûka DAIŞ'ê û vegera xelkê sivîl bo malên xwe, divê em Mûsilê bi dest ve bixin. Di zûtirîn dem de operasyona mezin dê destpê bike. Hevpymana Navdewletî li Iraqê bi Pêşmerge re tevdigere. Pêşmerge dê serkêşiya operasyonê bike."



**Dr. Bahar İssa: Kurd ne mecbûr in bibin parçeyekî kaosa li Iraqê**

Parlamentera kurd ya Parlamentoya Iraqê Dr. Bahar Îssa pêwendiyên RHK û Bexdayê ji BasNûçe'yê re nirxandin. Îssa eşkere kir ku Bexda bi awayekî siyasî têk çûye û RHK piştî vê çendê ji Bexdayê ti hêviyan nake. Parlamentera kurd ragihand ku Bexda bi birîna budçeya Kurdistanê û neşandina alîkariyên bo Pêşmerge peyameke vekirî dide Hewlêrê û diyar kir ku Hewlêrê jî dema wê hatiye ku van peyaman binirxîne.Îssa destnîşan kir ku dema wê hatiye ku kurd çarenûsa xwe diyar bikin û vê yekê ji Bexdayê re deklare bikin. Îssa wiha axivî: "Êdî ne pêkan e ku em behsa dewleta Iraqê û Bexdayê bikin. Iraq parçe bûye. Aboriya wê têk çûye, xaka wê hatiye dagirkirin, yekitiya siyasî tune ye. Kurd ne mecbûr in ku bibin parçeyekî vê kaosê û di nav de bimînin. Mafê me ye ku em di çarçoveya diyalogê de ji Iraqê cuda bibin."

Parlamentera kurd Îssa di dewama axaftina xwe de diyar kir ku ew hêvîdar e ku Iraq referandûma serxwebûnê ya kurdan bi erênî pêşwazî bike û ragihand ku cudabûna Iraq û Kurdistanê û cîrantiyeke baş bi hev du re di berjewendiya herdu aliyan de ye. Îssa wiha got: "Divê Iraq hem fêm bike û hem jî bibîne ku êdî dema wê hatiye ku em jê veqetin. Hevgirtina bi Iraqê re ne di berjewendiya Iraqê û ne jî di ya kurda de bû. Dema Iraqa nû hat avakirin, di destûrê de mafên kurdan hatin destnîşankirin, lêbelê Bexdayê yek jî bicih neanî. Dîsa li dijî xelkê me êriş çêbûn. Dîsa em rastî komkujiyan hatin. Divê em mafê xwe yê referandûmê ku Yekitiya Ewropa jî û Netewên Yekgirtî jî bi awayekî hiqûqî qebûl kiriye, bikar bînin û çarenûsa xwe diyar bikin."



### Fermandar Qasim Şeşo:

# Ji bilî Kurdistanê tu kesî ji êzdiyan re tiştek nekiriye

"Cenabê Serok bi xwe serpereştiya Operesyona Şengalê kir. Kurên wî, birayên wî û hemû malbat û mirovên wî jî pê re bûn û artêşeke gelek mezin ya Pêşmerge jî hat. Spasiya hemûyan dikim. Serok Barzanî bi xwe talîmat dan û Pêşmerge Şengalê xilas kir. Mixabin hin kes behsê vê yekê nakin. Niha jî hemû Pêşmerge di çeperan da ne. Ji Şengalê bigire heta digîhije sînorê Telaferê ev yek wisa ye. 70 kîlometreyan tenê Pêşmerge di çeperan de ne."

**Mehmed Salih Bedirxan**

DAIŞ'ê di Hezîrana 2014'an de êrîşî bajarê Mûsilê kir û bajar dagir kir. Piştî girtina Mûsilê bi mehekê DAIŞ'ê berê xwe da navçeya Şengalê û gundewarên wê. Di encama vê êrîşê de bi hezaran kurdên êzdî ji aliyê DAIŞ'ê ve hatin dîl girtin. Zêdetir ji 150 hezar êzdî xwe spartin Çiyayê Şengalê û li wir asê man. Gelek zarok û pîr li çiya mirin. Herwiha, zêdetir ji 240 hezar êzdî koçber bûn, 130 hezar kurdên êzdî di kampên penaberan ê Başûr de hatin bicihkirin. Zêdetir ji 2 hezar û 500 kes ji aliyê Asayîşa Herêma Kurdistanê ji destê DAİŞ'ê hatin rizgarkirin.

Di 13'ê Mijdara 2015'an de bi serperiştiya Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî Operasyona Şengalê destpêkir. Ji 20 hezarî zêdetir Pêşmerge tevlî operasyonê bûn û di nava 3 rojan de bajar û gundewarên Şengalê hatin rizgarkirin.

Bi minasebeta yadgirtina tevkujiya li Şengalê Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî beşdarî merasîmekê bû. Di merasîmê de Barzanî ragihand ku wî soza rizgarkirina Şengalê dabû êzdiyan. Barzanî niha jî soz dide wan ku ew bostek xaka Kurdistanê jî di destê DAIŞ'ê de nahêlin û ew ê dilên di destê DAIŞ'ê jî de rizgar bikin. Li aliyê din Barzanî tekez kir ku ew ê Şengala wêranbûyî weke mûze bihêlin û ew ê ji bo xelkê êzdî bajarekî nû ava bikin.

Fermandarê Hêza Pêşmergeyên Ezdî yên Şengalê Qasim Şeşo, di derbarê rewşa dawî ya Şengalê, avakirina bajarê nû, parastina Şengalê, hebûna YBŞ, YPŞ, YPG û PKK'ê li Şengalê ji BasNûçe'yê re axivî.

**Du sal di ser komkujiyê re derbas bûn. Hîn jî gelek îddiayên cuda tên ziman. DAIŞ çawa hat Şengalê û Şengal dagirkir?**

DAIŞ meha Tebaxa 2014'an hate aliyê me, min dît ewil Mûsil girtin, Mûsil ji destê dewleta Iraqê bi rihetî girtin. Dû re hatin Şengalê. Me zanî ketine mentiqa me, lê me nizanî saleke wekî 2014'an, ku telefon, înternet û televizyon heye û meriv dikare bi hemû cihê dinyayê re baxive û ew ji te haydar bibin, min qet bawer nedikir ku Ewropa, Amerîka û cîhan bihêle DAIŞ bi vî şêweyê bikeve Şengalê û vê zilm û neheqiyê li me bike. Ji ber wê jî me qurbaniyên gelek mezin dan. Kesekê bawer nedikir ku DAIŞ, bi vî şeklî wê bikeve Şengalê û ewqas zilmê li miletê me bike. Yek; me bawer nedikir ku ewqas bêexlaqî heye û ya duyem jî me digot cîhan nahêle DAIŞ bikeve Şengalê. Wê çaxa hatin zarokên me yên temenê wan ji mehekî heta insanên me yên 120 salî kuştin. We hemûyan jî bîhîst hezaran keç û kurên me girtin û hinek jî firotin, hinek heta niha jî di destê wan da mane. Piştî miletê me dît ku ev wehş û bê exlaq in; li Çiyayê Şengalê 2 hezar xortên êzdî soz û biryar dan û gotin yan em ê jî bimirin; yan em ê van hovan ji Şengalê derxinin. Par Pêşmerge, Çiyayê Şengalê bi temamî teslîmî me kirin. DAIŞ'ê zêdeyî 5 hezar insanên me kuştin û zêdeyî 5 hezaran jî dîl girtin. Di van şerên li dijî DAIŞ'ê bi sedan xortên êzdî hatin kuştin. Mûsil, Fellûce, Anbar û Selahaddîn girtin. Bes nekarîn Şengalê bi temamî bistînin.

Fermana 74'an bi ser me da anîn. Destê Tirkiyê, Îranê, Siûdiyê û gelek kesên din di vê fermanê de hebû. Her wextê ku zilm li me tê kirin, destê van tê de ye. Sedan sal in ev tişt tên serê me. Xelkê me vî zemanî bawer nedikir ku Fermana 74'an dê bê serê wan. Bi çavên xwe dîtin û îspat bû ku berê jî ferman li ser êzidiyan re hatiye. Hejmara me gelek zêde bû, lê hemû kuştin, niha milyonek ji me maye. Ev 700-800 sal in fermanan bi ser me de tînin. Eger wisa neba niha hejmara me gelek zêdetir biba. Lê nehiştin tu caran em zêde bibin. Hemû deman em kuştine û kêm kirine. Lê me jî Xwedayeke xwe heye. Bi du sedeman fermana kuştina me tê dayîn: Yek diyaneta me ya ezîdiyan e, yek jî zimanê me yê kurdî ye. Xwedê Teala em û dê bavên me weke êzdî afirandine. Herkesek bi tiştekê tê dinyayê, dinya wiha ye. Hin kes xirîstiyan, hin kes misilman, hin kes tiştek dî tê dinyayê. Hêvî û bang li cîhanê dikim ku ev zilme dubare nebe. Heta îro dinya pê nehesîbû, lê êdî dinya pêhesiya ku çi tê serê me.

**Cenabê te tevî Peşmergeyên ezdî wê demê bi qehremaniyeke mezin nîşan da û li dijî DAIŞ'ê berxweda. Hûn dikarin behsa êrişên DAIŞ'ê bikin?**

Dema DAIŞ hat em ji Şengalê çûne Gundê Şerefedînan û me kir û nekir berxwedan çênebû. Biraziyê min jî hate ba me gundê Şerefedînan û me soz da em warên xwe neterikînin. Ji 16 mêhweran ve êrîşê me kirin û kîlometreyek û nîv di nava me û DAIŞ'ê de mabû. 16 caran hatin bi ser me re girtin, lê xortên êzdî hemû caran berxwedan û êrîşa wan têk birin. Eger bi mentiqî em biçin divê ev dever hemû biketa destê DAIŞ'ê. Belê em dibêjîn me bawerî bi Xwedayê xwe heye û alemê ev zilm qebûl nekir. Dema Serok Barzanî hate seredana me ecêb ma. Bawer nedikir ew der Şerefedîn e, got 'min bawer nedikir ku DAIŞ bigihêje Şerefedînê.' Me 60 hezar insan ji devera Şerefedînê xilas kirin.

**Ez diwxazim bêm ser Operesyona Şengalê. Piştî berxwedana we ya mezin û hewldana Barzanî operasyoneke serkeftî li dijî DAIŞ'ê pêk hat. Di dema operasyona rizgarkirinê de atmosfereke çawa hebû?**

Cenabê Serok Mesûd Barzanî bi xwe serpereştiya Operesyona Şengalê kir. Kurên wî, birayên wî û hemû mal û mirovên wî jî pê re bûn û artêşeke gelek mezin ya Pêşmerge jî ji Kurdistanê hat. Spasiya hemûyan dikim. Xwedê emrê Barzanî me ji bo me dirêj bike. Serok Barzanî bi xwe talîmat dan û Pêşmerge Şengalê xilas kir. Mixabin hin kes behsê vê yekê nakin. Niha jî hemû Pêşmerge di çeperan da ne. Ji Şengal bigire heta digihije sînorê Telaferê ev yek wisa ye. 70 kîlometreyan tenê Pêşmerge di çeperan de ne. Eger we YPG an YPS an hêzek din dît; bila ew der heqê wan be. Em wî heqî nedin birayên xwe yên Rojava yan Bakur, bila ew jî biçin perçeyên xwe xilas bikin. Xeyala hemû xelkê me ew e ku rojekê çar perçeyê Kurdistanê bibin yek. Xeyala me jî ew e ku dewleta kurdî ya mezin çêbibe.

**Ez dixwazim bêm ser propagandayên wekî 'Pêşmerge Şengal berda û reviya.' Medyaya PKK'ê bi rojan di televîzyonan de behs kir ku Pêşmerge Şengal tenê hişt. Rastiya vê yekê çibû? Cenabê te wê demê li Şerfedîn bû yan li Şengalê bû?**

Wê çaxê halê min gelek xerab bû. Me bi erebeyê qeza kiribû. Doktorê Almanya gotê min 'divê tu heta meha 9'an ji nexwşxanê dernekevî.' Lê meha 7'an ez derketim. Welatê min di xeterê de bû. DAIŞ li Şengalê bû. Pêşmerge wê çaxê bi DAIŞ'ê re şer kirin û şehîd jî dan. Lê mixabin qaweta wan têr nekir û alîkarî jî ji bo Pêşmerge nehat û şikestinek çêbû. Piştî em gihîştin Şerefedîn me soz da ku em ji heremê naçin. Piştre Serok Mesûd Barzanî çek û alîkarî şandin. Me ancax karî bi wan çekên giran DAIŞ'ê rawestînin. Cenabê Serok Barzanî her tişt ji me re şand û ferman da. Bi xêra Xwedê û Pêşmerge û Serok Barzanî me Şengal xilas kir. Propagandaya PKK'ê jî ji serî heta binî ne rast e. Birayên me ku dibejin 'Pêşmerge Şengal berda û xilas nekir' çima Şengalê rizgar nekir? Ewên wisa dibêjin, ketine nav lîstika dijminên xwe.

**Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî wê demê ji bo hinek serbazên Pêşmerge lêpirsîn da destpêkirin. Tu encama wan lêpirsînan hatiye standin?**

Ez çûm, min berevaniya azadkirina wan Pêşmergeyan kir. Ew endamên partiyan bûn ku xelkê rêkbixin. Gelek dost û heval ketin berevaniya wan Pêşmergeyan. Yek ji wan jî ez bûm, û di dawiyê de ew hatin efûkirin. Ya girîng ew e ku tu careke din hişyar bibî. Mesela Almanya di dema şerên cîhanê de kete çi halî û niha çi di halê da ye. Ev ne fermana ewil bû, ji bo 182 hezar insan li Enfalê, 8 hezar Barzanî û 5 hezar li Helepçê hatin qetilkirin. Yanî kurdan gelek malwêranî ditine û ya me jî tevlî wê malwêraniyê bû. Lê piştî Pêşmerge hat careke din me erdê xwe rizgar kir. Ez bawer im eger Pêşmerge di şerê Mûsilê de nebe Mûsil nayê rizgarkirin. Eger em li benda Hikûmeta Bexdayê bimînîn tu caran Mûsil xilas nabe. Ez bawer dikim ku eger hêzên navnetewî jî alîkariyê bidin Pêşmerge wê Mûsilê jî di demek nêz de rizgar bike.



"Serok Mesûd Barzanî ji min pirsî; 'Em vê Şengalê ava bikin an yêke nû?' Min got; 'Ez tenê nikarim vê biryarê bidim û dixawazim raya xelkê û ya te jî bizanim.' Serok Barzanî got; 'bi ya min em Şengaleke nû avabikin.' Piştre min jî ev pêşniyar ji xelkê re got. Wan jî qebûlkirin ku Şengaleke nû wê baştir bibe. Jixwe avakirina Şengaleke nû hêsantir e û ev Şengala xirabe wekî îbret bimîne û di tarîxê de cîh bigire baştir e."

**Heşdî Şabî bi navê YBŞ, YPŞ niha li Şengalê ne. Herwiha eşkere dikin ku ew pabendî biryarên Bexdayê ne û kengî Bexda ji wan re bêjê ew ê ji Şengalê derkevin. Cenabê te li li ser vê helwesta wan çi difikire?**

Heşdî Şebî yekineya Îranê ye. Bi destê Îranê ev Heşdî Şebî hate çêkirin. Îran hez dike nifûzê li van deran bike û qewata kurdan kêm bike. Eger hêzeke Iraqî bibûya me fahm dikir. Ev hemû destêwerdanên Îranê ne û lewazkirina Kurdistana me ye. PKK û beşên wê yî din jî divê derkevin êdî. Mala wan ava be. Pêdîvî bi wan tuneye. Hêzên me hene. Çekên me hene. Bila êdî ji Şengalê derkevin.



**Biraziyê te Heyder Şeşo, fermandariya Heşdî Şebî dike. Demekê nakokî di navbera we de derketin. Ev nakokî hatin çareserkirin? Kak Heyder çima serkêşiya Heşdî Şabî dike?**

Heyder ji wê helwesta xwe vegeriya. Dema em bûne PDK, Heyder nû ji diya xwe bû. Salên 1970'ê bû. Em 2 salan li Çiyayê Şengalê man. Emrê wî wê çaxê 2 salî bû. Belê, wî bi ya me nekir. Eger em di heman riyekê de bibûna, wê baştir biba. Ew jî ji bo Şengalê wekî hin kesan rabû û gotinên wan dubare kirin di televîzyonan de. Hin kesên din ketine hişên wî. Divê ji wê riyê vegerîba. Ji bilî Pêşmerge û Serok Barzanî îro ne YPG, ne PKK ne Iraq û ne kesek din dikare me xilas bike. Ev heqîqetek e. Ev tiştekî aşkera û îsbatkirî ye. Kesek din ji bilî Pêşmerge û xelkê Kurdistanê tiştek ji me re nekiriye.

**Ji sedê 80'yê bajêr wêran bûye. Barzanî eşkere kir ku ew ê bajarê wêranbûyî ji bo mûzeyê bê hiştin û ew ê bajarekî nû bê avakirin. Ji bo vê yekê tu têkilî di navbera we Barzanî de hene? Xelkê Şengalê dê kengê bikarin vegerin?**

Cenabê Serok Mesûd Barzanî ji min pirsî; 'Em vê Şengalê ava bikin an yêke nû?' Min got; 'Ez tenê nikarim vê biryarê bidim û dixawazim raya xelkê û ya te jî bizanim.' Serok Barzanî got, ‚bi ya min em Şengaleke nû avabikin.' Piştre min jî ev pêşniyar ji xelkê re got. Wan jî qebûlkirin ku Şengaleke nû wê baştir bibe. Jixwe avakirina Şengaleke nû hêsantir e û ev Şengala xirabe wekî îbret bimîne û di tarîxê de cîh bigire baştir e. Da ku hemû cîhan van hovan ku welatê me aniye vî halî, bibîne.

**Ew bajarê ku nû bê avakirin dê li ku bê avakirin, dest bi avakirina bajarî kirine?**

Hîn destpê nekirine. Lewma Şengal hêj tam rizgar nebûye. 5 gundên êzidiya hêj di destê DAIŞ'ê de ne. Heta Şengal tam ewle nebe îmkan nîne ku destpê bikin. Cih heye û gelek in.

**Çiqas êzdî di kampan de ne? Çi agahîyên we li ser vê hene?**

Me raya xwe gotiye, em dixwazin xelkê me vegere. Niha Şengal hêj tam ewle nebûye. Lê xelkê devera Şemalê nêzîkî 30 hezar însan li kampê ne. Şemal êdî ewle ye wekî Duhok û Sêmelkayê. Lê mixabin ev xelkê me hêj venegeriya ye. Bi vî rengî bareke mezin ji bo Herêma Kurdistanê jî çêdikin. Jixwe jiyana malan ji jiyana çadir û kampan xweştir û bi şefertir e. Jixwe kampan hemû kes nexweş kirine. Dema Şengal tam rizgar bû, wê çaxê em dixwazin xelkê me yê Şengalê jî vegere.

**Çend Pêşmergeyên Şengalê hene?**

Tevlî yê Cenabê Serok Mesûd Barzanî 8 hezar û 10 Pêşmerge ne. Eger hê behtir çekên giran jî bikevin destê me ji bo pêşeroja me dê baştir bibe û em dikarin bi rihetî bereveniya xwe bikin.

**Li gor ku em dizanin hejmareke zêde ya kêçên êzdî jî bûne Pêşmerge. Hejmara wan çend e?**

Belê, ew jî tabîê fermana me ne û nêzî 120 keçên êzdî hene û ji Şengalê ne û Pêşmerge ne. Ferqa keç û kuran nîne di dinyayê de. Însan însan e û hiqûqa wan yek e. Dema hemû keçên kurd hatiye ku dest bavêjin çekan û xwe biparêzin. Ev welatê me hemûyan e. Ne tenê yê kuran e. Çawa kur berevaniya welatê xwe dikin divê keç jî wisa berevaniyê bikin.

**Gelek keçên Şengalê ketibûn destê DAIŞ'ê û hin keç hatin rizgarkirin. Li gor ku em dizanin gelek ji wan hatine tedawî kirin. Ji bo tedawiya wan çi hatiye kirin?**

Min bi xwe 70 însan şandine tedawîyê. Berî 10 rojan me ji Kak Sîdar Barzanî daxwaz kir ku 200 însanên me hewceyî tedaviyê ne, pêwîstiya wan bi alîkariyê heye. Cenabê Kak Sîdar û hemû malbata Barzanî texsîr nekirin. Hin doktorên Almanya alîkariya me kirin ji bo tedewîyê. Bi tifaqiya Hikûmeta Herêma Kurdistanê birînên xwe derman kirin û me keçên xwe rizgar kirin. Ji bilî van alîkariya kesekê negihiştiye me.

**Teqrîben 2 sal in cenabê te di nav vî şerî de ye. Tiştê ku te di vî şerî de ji bîr nekiriye çî ye?**

Ev dîmen tu car nayên jibîrkirin. Me keç û jin dîtin xwe kuştin, hinek ketine destê DAIŞ'ê, hin jin û zarokan bazdidan û kirin qêrîn û hewar. Me dît ku insan avê nabînin da ku vexwin. Me dît ku keçên me ji bo ku nekevin destê wan hovan xwe kuştin...



Şengal a kevn dibe muze

# Şengalek nû tê avakirin

Siwar Bedirxan

Şengala ku dikeve ser sînorê Iraq, Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) û Rojavayê Kurdistanê, 3'ê Tebaxa 2014'an rastî êrişên DAIŞ'ê hatibû. 2 sal di ser êrişên DAIŞ'ê yên bo ser Şengalê re derbas bûn. DAIŞ'a ku 10 Hezîran 2014'an de dest danîbû se duyem bajarê Iraqê yê mezin Mûsilê, bi çekên giran ku ji artêşa Iraqê bidest xistibû, êrişî Şengalê kir. Bi hezaran êzdiyan xwe spartibûn Çiyayê Şengalê, piraniya wan jin û zarok 5-6 hezar kurdên êzdî ji aliyê DAIŞ'ê ve hatin revandin û bi sedan kurdên êzdî hatin qetilkirin.

Piştî amadekariyek mezin di Mijdara 2015'an de 20 hezar Pêşmerge di bin Serfermandariya Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî de operasyoneke berfireh Şengal û gundên êzdiyan ji DAIŞ'ê hatin paqijkirin. Herwiha bi operasyonên Asayîşa Kurdistanê 2 hezar û 500 kurdên êzdî ji DAIŞ'ê hatin rizgarkirin.

DAIŞ a ku nêzî salekê navenda bajar kontrol kir, bi bicihkirina teqemeniyan, kolandina tunelan, îmhakirina binesaziya bajar, zirareke mezin dabû Şengalê. Herwiha di encama bombebarana balafirên hêzên hevpeyaman a bi mebesta piştevaniya Pêşmerge li dijî baregehên DAIŞ'ê yên li bajar jî li Şengalê kevir li ser kevir nemabû.

**Şengal dibe mûze**

Ji nûh ve avakirina Şengalê jî di rojevê de ye. Amadekariyên rizgarkirina Mûsilê, qeyrana siyasî ya bi Bexdayê re û şerê li dijî DAIŞ'ê astengên ji nûh ve avakirina Şengalê ne. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ragihandibû ku bajar wê bibe muze û li heremê wê bajarên nû werin avakirin. Li gor agahiyên ku BasNûçe'yê ji rayedarên Şengalê wergirtine ji bo avakirina Şengalê xebat wê di zûtirîn dem de destpê bikin û êzdiyên ku li Çiyayê Şengalê di konan de ne û yên li kampên RHK'ê de ne wê li cihên nû werin bicihkirin.

Li hêla din bajarê Şengalê bi awayekî îdarî ser bi wîlayeta Mûsilê ve ye û li gor benda 140 a destûra Iraqê ewan navçeyan wê biryara xwe bi referandûmê bidin.

**Qayîmeqam Xelîl: Bajarekî nûjen wê were avakirin**

Qayîmeqamê Şengalê Mihemed Xelîl, li ser avadankirina Şengalê û vegera xelkê êzdî, ji BasNûçe'yê re axivî. Xelîl ragihand ku ji bo ji nûh ve avakirina bajar û ji holê rakirina mexduryetên xelkê êzdî bi Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî re civiyane û diyar kir ku bajar nayê restorekirin û got ku wê bajarekî nû û nûjen ava bikin. Xelîl eşkere kir ku DAIŞ'ê li navenda bajar tunel kolandine û teqemenî bicihkirine. Mihemed Xelîl herwiha da zanîn ku hikûmeta RHK'ê re ji bo ku komkujiya Şengalê weke jenosîd bê nasîn li NY'yê dîplomasiyê birêve dibin û bang li rêxistinên humanîter yên navdewletî kir ku alîkariya kurdên êzdî bikin. Xelîl daxuyakirin ku xelkê êzdî yê li Çiyayê Şengalê û di kampan de dimînin wê piştî avakirina bajarê nûh vegerin. Qayîmeqam diyar kir ku ew ji siyaseta PKK'ê a ku li ser êzdiyan birêve dibe aciz in û destnîşan kir ku Pêşmergeyên êzdî wê Şengalê û êzdiyên herêmê biparêze.



**Parlamenter Şamo: Alîkariya herî mezin avakirina bajar e**

Parlamenterê êzdî yê Parlamentoya Kurdistanê Şêx Şamo vegera xelkê êzdî yên li kampan, alîkariyên dezgehên navnetewî û dîplomasiya RHK'ê a ji bo naskirina jenosîda êzdiyan ji BasNûçe'yê re nirxand. Şamo ragihand ku RHK'ê û Mesûd Barzanî ji roja ewil heta niha kurdên êzdî bi tenê ne hiştine, êzdî li kampan bicihkirine û ji bo jinavbirina mexduriyetên wan di nava hewldana de bûne. Şêx Şamo eşkere kir ku Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ji bo rizgarkirina êzdiyên di destê DAIŞ'ê de û ji bo malbatên ku kesên canê xwe ji dest dane gelek hewl daye û diyar kir ku mexduriyetên li Şengalê wê ji holê bên rakirin û kesên di êrişan de canê xwe ji dest dayî jî, ji hêla Midûryeta Şehîdan a RHK'ê ve wê weke 'şehîd' werin qebûlkirin.

Şamo got ku di ser 2 hezar û 300 jin û zarokên êzdî ji destê DAIŞ'ê hatine derxistin, bi sedan keçên êzdî jî li Almanyayê tedawiyê dibînin û ragihand ku hikûmeta RHK'ê ji bo rizgarkirina 3 hezar êzîdiyên di destê DAIŞ'ê de jî di nava hewldanan de ye. Şamo eşkere kir ku Bexdayê zilma ku li êzdiyan hate kirin





nedît û destnîşan kir ku Hewlêr li hawara êzdiyan çû û herwiha amaje bi wê yekê kir ku piştgiriya herî mezin a bo êzdiyan ji nûh ve avakirina bajar e.

**Cîgirê Serokê Weqfa Xêrxwaziyê ya Barzanî Musa Ehmed: Em ê di avakirina Şengalê de cih bigirin**

Cîgirê Serokê Weqfa Xêrxwaziyê ya Barzanî Musa Ehmed ku bi êrişên DAIŞ'ê ve ku bi hawara êzdiyên li Çiyayê Şengalê çû û wan li kampan bicihkirin, bi helkefta 2. salvegera Komkujiya Şengalê ji BasNûçe'yê re axivî. Ehmed ragihand ku ew weke Weqfa Xêrxwaziyê ya Barzanî kurdên êzdî ji roja ewil heta niha bi tenê ne hiştine û diyar kir ku bi helîkopter û balafiran alîkarî ji xelkê li Çiyayê Şengalê asê mayî re hinartine. Ehmed destnîşan kir ku piştî Şengal ji destê DAIŞ'ê hat derxistin, nexweşxane li bajêr avakirine û ji bo ku kurdên êzdî mexdûr nebin wan gelek xebat kirine û hewl dane. Ehmed destnîşan kir ku 500 li zarokên sêwî bûne xwedî. Cîgirê Serokê Weqfê eşkere kir ku di operasyona rizgarkirina Şengalê de bi Pêşmergeyan re gihiştine bajar û xelkê êzdî bi tenê e hiştine. Ehmed ragihand ku ew ê di avakirina Şengalê de jî cih bigirin.

Ehmed di dewama axaftina xwe de got ku wan di civînên navdewletî de jî mijara avakirin û alîkarkirina Şengalê anîye rojevê û destnîşan kir ku divê gelê Kurdistanê jî ji bo alîkariya Şengalê kampanyayan bide destpêkirin: "Ez bang li kurdên Rojava, Rojhilat, Bakur û Başûr dikim ku xelkê êzdî bi tenê nehêlin. Kurdên dîasporayê bila kampanyayê alîkariyê lidar bixin. Em jî kampanyayên navdewletî birêve dibin."

**Berdevkê Pêşmergeyên Şengalê Xelîl: 8 hezar û 400 Pêşmergeyên Şengalê hene**

Nûnerê Yekîneyên Pêşmergeyên Şengalê Şivan Xelîl jî di derbarê parastin û ewlekariya Şengalê ji BasNûçe'yê re da zanîn ku niha 8 hezar Pêşmergeyên xwebexş xaka Şengalê diparêzin. Xelîl ragihand ku ev hêza Pêşmerge di operasyona rizgarkirina Şengalê de jî bi awayekî çalak cihê xwe girtibû û diyar kir ku hêza Pêşmergeyên Şengalê meha borî bi Wezareta Pêşmerge ya RHK'ê ve hat girêdan û ligel hevpeymana navdewletî li dijî DAIŞ'ê bi awayekî koordîneyê şer dikin. Xelîl herwiha destnîşan kir ku dema derketina hêzên din yên leşkerî ji Şengalê hatiye û wiha axivî: "Em spasiya birayên xwe yên ku ligel me di parastina Şengalê de cih girtin dikin. Êdî dema wê yekê hatiye ku ji Şengalê derkevin. Divê Şengalê nekin qada siyasetê. Hêza me heye. 8 hezar û 400 Pêşmergeyên Şengalê hene." Xelîl diyar kir ku ji sedî 3'yê xaka wan di destê DAIŞ'ê de maye û anî ziman ku di demekî nêz de Pêşmergeyên Şengalê wê wan deveran jî ji destê DAIŞ'ê derxînin.



## Mesud Barzani: Em yek buhust xaka xwe nahêlin

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ku soza rizgarkirina Şengalê û êzdiyên di destê DAIŞ'ê de dabû, di merasîma Duhokê de ku bi helkefta 2. salvegera komkujiya Şengalê hat lidarxistin de axaftinek pêşkêş kir. Barzanî di vê merasîma daxuyaniyên girîng dan. Serokê RHK'ê got, "Beriya 2 salan li Şengalê karesateke mezin bi serê gelê kurd de hat. Ev ne karesata yekem bû, lêbelê hêvî dikim ya dawîn be. Ev karesata hatiye serê birayên me yên êzdî, bi serê me hemûyan de hatiye. Jinên êzdî namûsa me hemûyan in. Keça êzdî serê te bila bilind be, em hemû bi we şanaz in. Şukr ku heta niha zêdetirî 2 hezar û 500 mirovên me yên êzdî ji destê terorîstên DAIŞ'ê hatine rizgarkirin û bo rizgarkirina yên mayî jî hewldanên me berdewam dikin. Min soza rizgarkirina Şengalê dabû. Me Şengal ji destê terorîstan derxist. Niha jî ez dîsa soz didim we: Em buhusteke xaka xwe di destê DAIŞ'ê de nahêlin.

**"Êzidxan ne rizgarbe, nabêjim Kurdistan rizgar e"**

Barzanî herwiha destnîşan kir ku rondikên rêberê êzdiyan yê ayînî Baba Şêx yên piştî êrişên ser Şengalê bandoreke mezin li ser wî kiriye û li ser hevdîtina xwe ya bi Baba Şêx re wiha got, "Birayên hêja, ev karesateke bi kul û xem bû. Ji min re got, "êdî Êzîdxan nikare bê rizgarkirin." Min jî jê re got, "Baba Şêx wisa nebêje, heta ku Êzîdxan neyê rizgrkirin, ez nikarin bêjim Kurdistan rizgar e." Min got, 'em ê tola xwe ji van hovan hilbidin.' Şukur me tola xwe bi awayekî merdane hilda. Ez bang li ciwanên Kurdistanê dikim: Ez wê derûniya hûn tê de fêm dikim, lêbelê hûn dizanin ku xelkê Kurdistanê bi exlak û terbiye ye. Ji ber wê yekê dema me tola xwe hilda jî em ê merd û biwijdan bin."

Barzanî di beşeke din a gotara xwe de li ser komkujiyên bi serê xelkê Kurdistanê de tên sekinî û got ku ji bo ku êdî kurd rastî komkujiyan neyên tekane rê serxwebûn e. Herwiha Barzanî ragihand ku ji bo serxwebûnê bang li partiyên siyasî kiriye.

# ZİMANGEH



Abdullah Kıran

Di vê beşa rêzenivîsa xwe de emê li ser çendîn têgehên ku di jiyana rojane de tên bikaranîn rawestin.

**Hon: Alan, yelpaze (Range, spectrum):**
1- Di karê tirpankirinê de bergeha ku tirpankar daye ber xwe.
2- Fireh an teng girtina karekî.
Mînak: Eger desthilatiya siyasî hona xwe fireh bigire û dest bi girtina kurdan jî bike, hingê rewş xerab e; belê hona xwe teng bigire û tenê sûcdaran ceza bike, wê gavê netirse.
**Mînak:** Ma min ji te re negot hona lêkolîna xwe fireh bigire, bi dorfirehî li ser mijarê raweste.
**Honandin: Örmek (Weave):** Li hevdû lefandina kezî an ben.
**Mînak:** Xezalê porê keçika xwe honand û ew sere sibê zû şand dibistanê.
**Kovik:** Huni (Funnel) navgînek ku ji bo dagirtin û valakirina tişên ran (av, şîr, rûn û hwd.) tê bikaranîn.
**Mînak:** Ka te rûn bi kovikê dikir şerbik.
**Conî: Dibek (Mortar):**
1- Kevirê qewirandî yê ku dan tê de tê kuta.
2- Derdanek ku dan an tiştên dendikî (kakilî) tê de tên kutan.
**Mînak:** Emê îro danê xwe di conî de bikutin.
**Hon:** Çap (Diameter)
1- Firehbûna tiştan.
2- Pîvan û mezinahiya tiştekî.
Mînak: Ma tu dikarî hona vî sêkujî derînî?
**Hona siyasî: Siyasi yelpaze (Political spectrum):**
1- Hemû partî û nêrînên ku di qada siyasî de cih distînin.
2- Rewşa ku partiyên siyasî bi çalakiyên xwe ji baweşînê re dibin sedem.
**Mînak:** Hona siyasî ya Kurdan gellek fireh e, ji dîndaran bigire heta partiyên azadîxwaz, bi her rengên xwe rêxistî ne.
**Mînak:** Girtina partiyan û tengbûna hona siyasî xesarekê dide demokrasiya me; divê serbestiya rêxistînî hergav bê parastin.
**Hona xwe fireh girtin:** Yelpazeyi geniş tutmak (The enlargement of spectrum)
1- Di kirina karekî de bergehê fireh girtin
2- Di lêkolînekê de bi berfirehî li ser mijarê rawestan.
**Mînak:** Min sed caran ji te re got hona xwe fireh bigire, emê tevahiya zeviyê bidirûn.
**Mînak:** Te piçekê hona xwe fireh bigirta, tu tiştek ji destê te nedireviya.
Hona xwe teng girtin: Yelpazeyi dar tutmak (the restriction of spectrum)
1- Di kirina karekî de bergehê teng girtin.
2- Di lêkolînekê de ne bi berfirehî, belê ji ser ve li ser mijarê rawestan.
**Honas:** Kesê ku di karê tirpanê de herî li pêş e û rê li ber tirpankarên din vedike. Çawa ku sergovend govendê digerîne, honas pêşkişiya tirpankarên din dike.
**Mînak:** Îro honasê me Hesen e.
**Baweşk: Yelpaze (hand fan):**
1- Navgînek bi destî yê ku ji bo hênikkirana rû, ango serçav tê bikaranîn.
2- Navgînek ku tê hilgirtin û li hev qatkirin; bi awayê baweşkê ye.
**Mînak:** Di vê germa ha de baweşk ferz e.
**Baweşkirin: Yellemek (fan):** Karê baweşkirinê.
Mînak: Ba tunebe, bi baweşkkirinê em hênik nabin.
**Pak:** Temiz (Clean)
1-Rewşa paqijbûna tiştekî.
2- Başî, şîfa, qencî.
3- Ne baş û ne xerab; îdare.
**Mînak:** Ava kaniya me têra xwe pak e.
**Mînak:** Spas ji Xudan re, êdî Lezgîn pak e; ji nexweşîna xwe xelas bû.
Mînak: Mamo rewşa te çawa ye? Ez pak im.
**Mînak:** Îsal karê me ne baş û ne jî xerab e; pak e pak!
**Gevzik:** Toz, duman (Dust):
1-Toz û dûman.
2- Gilêş (çop), sergo.
**Mînak:** Zarok dîsa di nav gevzikê de ne.
**Gevez:** Açık kırmızı (light red): Sorê vekirî, sorê tam ne sor.
**Mînak:** Teyrê gevez cardin li ser mala me danî.
**Mînak:** Ew ne sor û ne jî zer e, gevez e.

***Not: Ji bo rexne, gazin, lome û pêşniyazên xwe ji min re binivîsin: 29abdullah@gmail.com***

# Gever û Cizîr êdî parêzgeh in!

Dilan Almaz




Serokwezîrê Berê Ahmet Davutoğlu dema ku li herêmê şerê xendeqan berdewam dikir, diyar kiribû ku wê Şirnex û Colemêrg ji statuya parêzgehiyê bên daxistin û Cizîr û Gever wê bibin parêzgeh. Ji ber ku li Cizîr û Geverê bûyerên şîddetê hene û ew bajar ji navendê dûr in û hikûmet nikare demildest mudaxele bike, vê pêşniyarê pêşkêşê parlamentoyê kiribû. Demeke dirêj e di parlamentoyê de guhertina pergala rêveberiyê dihat niqaşkirin. Hefta borî Hikûmetê bi biryarnameyekê ev yek pesendkir. Li gorî vê biryarê Colemêrg û Şirnex ji statuya parezgehiyê hatin derxistin û Cizîr û Gever bûn parezgeh. Herwiha ev biryar di nava welatiyan de bû sedemê nîqaşan. Welatî ji ber îhtîmala zêdebûna şîddeta polîtîkayên ewlehiyê gelek xemgîn in û ji aliyê din ve ji ber ku Colemêrg û Şirnex wê mexdûr bibin, welatî protestoyan dikin.

Niştecihên Colemêrg û Şirnexê li kolanan daxwaza betalkirina biryarê dikin. Xelkê deriyê dikkanên xwe girtin û bi meş û çalakiyên din nerazîbûnên xwe nîşan dan.

Ji bilî niştecihên Colemêrg û Şirnexê, welatiyên Şirnex û Colemêrgên ku li bajarên din ên Tirkiyê dijîn jî derketin kolanan û nerazîbûnên xwe nişan dan. Ji aliyê din ve saziyên medenî yên wan bajaran, ji bo betalbûna vê biryarê dest bi kampanyaya îmzayê kirin û dê wan îmzayan radestî rayedaran bikin.

**Xatirxwestina ji Colemêrg û Şirnexê**

Dema ku Gever û Cîzre bûn bajar, navê Colemêrg û Şirnexê jî dê bên guherandin. Ji bo Colemêrgê navê Çölemerik, ji bo Şirnexê jî navê Nûh tê pêşnîyar kirin. Li gorî rêvebera îdarêyê; navçeyên Geverê wisa ne: "Çölemerik, Çukurca (Çelê), Derecik û Şemzînan." Dê ew bibin navçeyên Cizîrê:" Beytüşebap, Güçlükonak, İdil, Nuh, Silopî û Uludere." BasNûçe'yê li ser vê biryarê bi parlamenter û şaredarên wan bajaran re axivîn.

**'Ev biryar divê bê betalkirin'**

Parlamenterê HDP'ê yê Colemêrgê Abdullah Zeydan diyar kir ku heger ev biryar di çarçoweya polîtîkayên ewlehiyê de bê nirxandin, nayê qebûlkirin û divê bê betalkirin: "Eger amanc xizmeta xelkê be, pewîst e di destpêkê de daxwazên xelkê yên demokratîk bên bicihanîn. Welatiyên Şirnexê dê gelekî mexdûr bibin. Ji ber ku wê cihê karmendan bê gurhertin û dê biçin Colemêrg û Cizîrê. Jiyan û bernameyên paşêroja xelkê yên Şirnex û Colemêrgê dê tevlihev bibin. Hemû serwet û samanên wan dê tune bibin. Li gorî me, ev biryar nayê qebûlkirin. Em daxwaza betalkirina wê dikin." Zeydan, derbarê guhertina navê bajaran de wisa got: "Guhertina navê bajaran, helwestekek siyasî ye. Wê çaxê divê navê Yüksekova'yê jî bibe Gever. "

**'Armanc zêdekirina baregehên leşkerî ne'**

Parlamenterê berê yê BDP'ê yê Şirnexê Parezêr Hasip Kaplan, ev biryar wisa nirxand: "Dema ev biryar hat dayîn, nêrînên gel nehatiye pirsîn û bi vê rêbazê ceza didin gel." Li gor Kaplan, ev biryar bi armanca zêdekirina baregehan leşkerî li Gever û Cizîrê hatiye dayîn.

Kaplan axaftina xwe bi vî awayî berdewam kir: "Dema ku ev biryar hat stendin, li ser warên aborî û cîvakî yên bajêr nehatiye fikirîn. Armanca wan ew e ku serjimar bê guhertin û gelek hêzên ewlehî li wan bajaran dê bên bicihkirin û bi wî awayî bajêr kontrol bikin. Kaplan bahsa prosesa serlêdana hiqûqî jî kir û got ku kesekî bixwaze li dijî vê biryarê dikare serlêdana hiqûqî bike.

Kaplan wiha got: "Gel dê bi awayên cûrbicûr zirerê bibînin. Bo mînak nasname dê bên guhertin, nav dê veguherin hwd. Ji ber ku gel dê gelekî mexdir bibe, baroyên wan bajaran dikarin ji bo betalkirina vê biryarê rêyên hiqûqî bi kar bînin. Heger li Tirkiyê bersivek erênî bi dest nexin, dikarin serlêdana Dadgeha Mafên Mirovan ên Ewropayê bikin. Herwiha li gorî Peymana Mafê Mirovan ya Netewên Yekbûyî serlêdanên Komîsyona Mafê Mirovan ya NY'yê bikin. Ji ber ku derbarê guhertina navê bajaran de nêrînên xelkê nehatine pirsin."

**'Veguheztina parezgehê zilm e'**

Parlementerê HDP'ê yê Şirnexê Leyla Birlik da zanîn ku dewlet ji bo polîtîkayên ewlehiyê vî karî dike: "Ew dibêjin, 'serjimêra Cizîrê ji bo parezgehbûnê ra têr dike. Dewlet ji bo zêdekirina baregehên leşkerî vê yekê kiriye. Ew vê yekê ji bo pêşketina aboriya xelkê nakin." Birlik îdia kir ku; dewlet dixwaze Şirnexê vala bike: "Kêşeya gel azadî û statû ye. Gel daxwaza mafên rewa yên mirovî û mafên hiqûqî dike. Ew hemû paşguh dikin û bawer dikin ku hemû kêşe bi polîtîkayên ewlehiyê dê çareser bikin. Difikirin ku eger baregeh li Cizîr û Geverê bên sazkirin, dê bikaribin wan kêşeyan çareser bikin." Birlik da zanîn ku divê ev biryar ji gel û civakê bihata pirsîn û veguheztina parezgehê û daxistina vê bi navçeyê zilm e ji bo Şirnexê. Birlik derbarê vê biryarê de pêşniyaznameyek jî pêşkêşê parlamentoyê kiriye: "Li wê derê însan tên kuştin, li dijî mirovahiyê tawanbarî tên kirin. Hîn jî ji kolanan cenaze derdikevin. Ew radibin û dibêjin, 'em vê derê dikin parezgeh."

**'Xizmeta aramiyê bike, emê piştevaniyê bikin'**

Parlamenterê Berê yê AKP'ê Şirnexê Emin Dindar jî diyar kir ku ev mijar 3-4 sal in tê nîqaşkirin. Û yek ji sedemên vê biryarê ew e ku di aliyê erdnîgarî bajarvaniyê de Şirnex û Colemêrg nikin fireh bibin. Dindar wisa pê de çû: "Ji ber ku herêmek asê, şilope û çiya ye, saziyên fermî nikarin avahiyan çêbikin. Ji ber vê serjimêra Cizîrê zêde dibe. Herwiha Cizîr bajarek dîrokî ye. Ji ber vê parlamentoyê ev biryar daye. Tiştê herî girîng pêkhatina aramiyê ye. Helbet welatiyên Cizîrê dê kefxweş bibin û Şirnexî jî xemgîn bibin. Ji ber ku Cizîr dibe parezgeh, ez jî kefxweş im. Lê herî zêde eger li herêmê aramî pêk bê, ez ê kêfxweş bibim. Tiştên ku alîkariya aramiya herêmê dikin, em hemû pê dilşad dibin."

**'Ev biryar ne ji xemên leşkerî ne'**

Dindar da zanîn ku ev guhertin dê alîkariya peşkeftina aboriyê jî bike. Dindar hewldana sazkirina santrala termîk jî bi bîr xist û got: "Xelkê Şirnexê naxwazin ev santral bê çêkirin. Di wan rojan de dîsa ev santral di rojevê de ye. Şirnex navenda komirê ye. Ji ber ku Şirnex hem nêzîkî navenda komirê ye û hem jî ji ber vê santralê, nikare di warê erdnîgariyê de fireh bibe û îhtîmalen ji ber vê yekê ev biryar hatibe dayîn. Herwiha nîvê bajarê Cizîrê hatiye hilweşandin. Ji bo çêkirina avahiyên nû, Cizîr cihekî baş e."

Dindar derbarê angaştên "ji ber polîtîkayên ewlehiyê pergala rêveberiyê tê guhertinê" jî got; "Şirnex û Colemêrg ji ber polîtîkayên ewlehiyê bûbûn bajar. Îro êdî girîngiya peyva leşker nemaye. Îro artêş bi tevahî tê guhertin. Biryarak leşkerî nîne, sivîl e."






# 'Di navbera İran û Silêmanî de sînor nema ye'

Memê Botî



Piştî şer û pevçûnên di sala 2010'an ku li Rojhilata Navîn çêbûn û DAIŞ derket holê, sinorên Iraq û Sûriyê jî têk çûn. Îro êdî rojbiroj ev herêm zêdetir tevlîhev dibe, şerekî giran jî li herêmê berdewam e ku bûye sedema mirin û koçberiya çend milyon kesan. Herwiha hevpeymeniyeke xurt ji hemû hêzên sereke yên dinyayê li dijî DAIŞ'ê pêk hatiye, lê ev hêz zêdetir bi riya balafir û bombebarana çeperên wan ve mijûl dibin, şerê li ser erdê ku gelekî jî girîng e li her du welatên Sûriyê û Iraqê jî ketiye stûya kurdan, DAIŞ û herwisa hêzên cîran ku ji meseleya bihêzbûna kurdan kêfxweş nînin gelek caran bi riyên curbicur xwestine destêwerdana herêma kurdan bikin û wan têk bibin lê heta niha bi ser neketine û kurdan li ber xwe dane.

Bi ser ve jî, niha du sal in pêwendiya Bexda û Hewlêrê jî qut bûye û êdî bûdceya HRK'ê nayê şandin ku qeyraneke mezin ya aborî li Kurdistanê dûrist bûye û kurd têdikoşin van qeyranan çareser bikin, yek ji mijarên ku niha ketiye rojeva kurdan, meseleya serxwebûnê ye, wek ku Serokê HRK'ê Mesûd Barzanî jî amaje pê kir, "êdî divê em ji bo çarenivîsa xwe biryarê bidin." Meseleya serxwebûnê rojbiroj ku cidîtir dibe bi taybetî jî Îran ji vê yekê kêfxweş nîn e û bi her awayî hewl dide destêwerdanê di HRK'ê bike. Ji bo vê yekê jî destwerdana nav siyaseta kurd dike û bi hinek partiyên kurd re li dijî hewldanên serxwebûnê tevdigere. Bi gotina Prof. Seyder ew partiyên kurd wek 'Hespa Truwayê' bikartîne.

Li aliyê din milîşeyên şîe yên Heşdî Şabî jî roj bi roj li Iraqê bihêz dibin û li navçeyên weke, Xurmatû, Hewîcê yên Kurdistanê provakasyonan dikin û êrîşî xelkê sivîl ê kurd dikin.

Akademîsyen Prof. Dr. Ferhad Îbrahîm Seyder û rojnameger Dilşad Mustafa Wasanî di derbarê destêwerdana Îranê ya li ser HRK'ê ji BasNûçe'yê re axivin.

**Rojnameger Wasanî: Bexda di destê Îranê de ye**

Rojnameger Dilşad Mustafa Wasanî, amaje li ser wê yekê kir ku piştî têkçûna rejima Seddam Hûsên rê li ber Îranê vebûye. Herwiha Wasanî destnîşan kir ku niha li Iraqê serweriya Iraqê nema ye û wiha got: "Piştî sala 2003'ê ku hikûmeta sedem hate rûxandin êdî Iraq hate guhertin û desthilata Îranê jî gelekî hewl da ku li Iraqê cihê xwe vebike, guherîneke mezin çêbû, ji ber ku hêz kete destê şîeyan ev tişt jî ji bo Îranê re girîng bû, Îran qet venaşêre vê tiştê, û ji hêla stratejîk va dibêje Bexda paytexta me ye jî. Ev tişt heta rawêjkarekî Hesen Rûhanî jî digot, yanê ev destêwerdan aşkere heye ji ber ku ew Iraqê weke hikûmeta xwe dizanin, loma vê yekê li ser rewşa Iraqê tesîr daniye û ev tesîr li ser Herêma Kurdistanê jî heye. Wek nimûne niha Bexda behsa serweriya xwe dike lê li Iraqê niha serwerî nemaye, yanê eger em li Iraqê binêrin di rastiyê da li ser sê paran hatiye dabeşkirin, lê nêrîna Bexdayê li ser her du herêmên din cuda ye û ew hîn jî xwe serwer dizanin, mînak hatina artêşa Tirkiye ber bi Mûsilê ve weke destêwerdan dibînin lê eger Îran di her cihê da jî hebe ev yek ne xem e. Îran bi her awayî fişarê dixe ser Herêma Kurdistanê. Niha du sal in ku ku Bexdayê bûdceya HRK'ê biriye lê eger Îran bixwaze di hefteyekê da vê meseleyê çareser dike."



**"Îran ji ser Heşdî Şabî Kurdistanê tehdît dike"**

Li aliyên Wasanî amaje li ser wê yekê jî kir ku Îran hewl dide Hîlala Şîe ava bike û bi wê mebestê milîsên bi nave Heşdî Şabî li Iraqê bi cih dike. Wasanî di dirêjahiya axaftina xwe de tekezî li ser wê yekê jî kir ku rejima Îranê berdewam e ji bo têkbirina HRK'ê jî û wiha got: "Îran ji ber ku hîn jî li pey duristkirina Hilala Şîe ye, wisa dizane ku her devereke nû li herêmê dikare jê re bibe asteng û rêgir loma ji ber ku ew Iraqê li ser welatê xwe dihesibîne, naxwaze ku Kurdistan ji Iraqê cuda bibe û ji bo vê yekê jî gelekî dikoşe, heta di nava HRK'ê de jî nifûza xwe çêkiriye û hewl dide di nava aliyên siyasî li wir jî kêşeyan çêbike. Niha jî bi rêya Heşdê Şebî ku ji artêşa Iraqê jî girîngtir e hewl dide ji HRK'ê re bibe rêgir. Û hertim bi rêya wan dixwaze HRK'ê tehdîd bike û meseleyek din jî heye ku Îran ji pêwendiya di navbera Herêma Kurdistanê û Tirkiyê qet kêfxweş nîne."

**Prof. Seyder: Îran li dijî hevgirtina kurda ye**

Akademîsyen û Prof. Dr. Ferhad Seyder jî di derbarê hewlên Îranê yên li Rojhilata Navîn û HRK'ê de ji BasNûçe'yê re axivî. Seyder, eşkere kir ku Îran neraziye ku Kurdistan serbixwe be û ew li dijî wê yekê ye ku rapirsin pêk were: "Gelek sedem hene ku Îran li dijî serxwebûna Kurdistanê be û bixwaze destêwerdana HRK'ê bike. Yek ew e ku beşekî Kurdistanê di nava sinora Îranê de ye ku xelkê Rojhilatê Kurdistanê gelek zehmetiyan dikişînin û di bin zext û zora rejîma Îranê de ne, eger serxwebûna Kurdistanê bê ragihandin yan ne serxwebûn jî weke mînak eger tirk û kurd bixwazin bi awayekî li hev bikin û kêşeyên xwe çareser bikin Îran li dijî vê yekê ye, li Iraq û Sûriyê jî heman mesele ye. Îran bi giştî li dijî hevgirtina kurdan e. Weke din jî meseleyên mezhebî û dînî jî hene, yanê eger em îro li Iraqê binêrin em dibînin ku Îranê Iraq girtiye bin destê xwe û naxwaze herêmeka din çêbibe ku li derveyî hegemoniya wan be."

**"Di navbera Îran û Silêmaniyê de sinor nema ye"**

Akademîsyen Seyder ragihand ku Îran dixwaze ji ser kurdan polîtîkayên xwe li herêmê bi cih bike lêbelê Mesûd Barzanî ew yek qebûl nekiriye û rê nedeya Îranê ku ji ser HRK'ê alîkariyê bide Esad. Seyder peywendiyên PKK'ê, Goran – YNK'ê yên bi Îranê jî re bi bîr xist û daxuyand ku sînor di navbera Silêmanî û Îranê de nemaye û Silêmanî bûye parçeyekî Îranê: "Dema ku 4 salan berî niha şerê navxweyî li Sûriyê destpê kir, hikûmeta Îranê ji Serok Barzanî xwest ku ew bi riya HRK'ê alîkariya rejîma Esad bikin lê Serok Barzanî ev yek qebûl nekir û got, 'ev meseleyeke navnetewî ye ez naxwazim em xwe tevlî vê meseleyê bikin' û rê li ber wê girt. Em dikarin bibêjin Silêmanî jî niha di bin desthilata Îranê de ye, ne bi awayekî fermî lê bi awayekî veşartî, desthilata Îranê li Silêmaniyê gelekî xurt û em dikarin bêjin ku di navbera Îran û Silêmaniyê de sinor nema ye. Û danûstandin heye. Wisa xuya ye ku YNK, Goran û PKK'ê li ser meseleya 'Hilala Şîî' bi Îranê ve li hev kirine û Îran bi ti awayî naxwaze heta çareseriyeka biçûk jî ji bo kurdan pêk be. Sê partiyên kurdan bi Îranê re ne û ew weke meseleya "Hespê Truwa"yê ye, Îran herdem ku bixwaze dikare wan partiyan weke Hespê Truwa'yê bi kar bîne û bigihêje armancên xwe."


Dilşad Mustafa Wasanî — Ferhad Seyder

**"Îran naxwaze serxwebûn ji Rojhilat re bibe mînak"**

Seyder tekez jî kir ku duristbûna dewleta kurdî li Başûr wê tesîrê li kurdên Rojhilat jî bike û ji ber vê çendê Îran rêgiriyê di ber bizava serxwebûna Kurdistanê de dike. Seyder rikberiya mezhebî ya di navbera dewletên Rojhilata Navîn jî bi bîr xist û wiha domand: "Xelkê Îranê niha ji her miletî zêdetir nijadperest in û ji ber ku di siberojê de ev meseleya serxwebûna Başûr ji bo kurdên Rojhilat re nebe mînak, Îran ji niha ve pêşiya hertiştî digire, meseleya din jî meseleya Rojhilata Navînê ye, niha em li xerîteya siyasî binêrin em dibînin ku Îran herêmê de bûye dewletê herî bihêz; Tirkiye, Îran, Siûdiye û Cezayir çend welatên bi hêz di Rojhilata Navîn de ne û şerekî veşartî di navbera Îran, Tirkiyê û Erebistanê de heye, Îran naxwaze roleke tirkan di herêmê de hebe."

# Kurdolojî û İsmail Beşikçi

Miraz Babij

Herçiqas ma xebatê kurdolojî bi çimêno pêroyiya tehlîl kerdê zî, wexto ke behsê kurdolojî û kirdkî bibo, bêguman cayê M. Malmîsanijî ciya yo. Xora termê "antî-kurdolojî" û "kurdolojiyo nimiteyî" reya verên Malmîsanijî xebitnayê.

Kes eşkeno peynaseyê kurdolojî di şeklana bikero. Şeklo yewin, sey beşa zanistî kurdolojî: Heme zanistiyê ke derheqê kurdan ê; tarîx, edebiyat, gramerê kurdî, sosyolojiyê Kurdistanî, antropolojî usn. Ê didin, ca yê zanistiyê ke sey akademî, enstîtuyê perwerdeyî usn. goreyê nê peynaseyan kes eşkeno vajo ke kurdolojî hema-hema çîn o yan zî zaf zeîf o.

Xebatê kurdolojiyê verênî hetê xerîban ra virazeyayê, nînan ra o yo ke tewr namdar; Maurizio Garzoni yo îtalyano ke serra 1787'î de "Ferheng û Gramerê Kurdkî" nuşto yo.

Garzoni ra teber xeylê merdiman zî kurdolojî ser ro xebatî kerdê. Nê roşinvîran ra tayê ci: F. Justi, Alessandro Coletti, E. Rödiger, A. F. Pott, Theodor Nöldekc, Albert Socin, Ferdinand Justi, Oscar Man ve Karl Hedank.

Nînan ra Freidrich Müllerî hem kurmanckî ser ro hem zî kirdkî (zazakî) ser ro xebatî kerdê.

Cigêrayoxo Amerîkan S. A. Rhea zî mabênê serranê 1851 û 1865'î ameyo Colemerg û ûca de kurmanckî museno. Dima zî kurmanckî ser ro yew gramer nuseno.

Nê cîgerayoxanê xerîban ra teber cigerayoxanê kurdan zî kurdolojî ser ro xebatî kerdê.

Tevfîk Wehbî mabênê sorankî ser ro xebatî viraştê û serra 1926'î de bi nameyê Gramerê Kurdkî xebatêna xo neşr kerda.

Gîw Mukriyanî serra 1950'î de Ferhengê Erebkî-Kurdkî, serra 1955'î de zî ferhengê Erebkî-Farskî-Kurdkî weşanayo.

Bê nê roşinvîran sey Dr. Abdullah Haci Maruf, Cemal Nebez, M. E. Hewremanî, Hamîd Ferec, Tahîr Sadîk, Îzedîn Mistefa Resûl roşinvîran zî xebatî kerdê.

Herçiqas sey Mihemed Mukrî, Qadirê Fetahî Qazî, Şêx Merdûxî Kurdistanî, Sadîq Safîzade Borekeyî Kurdîstanê Rojhilatî de tayê xebatan bikarê zî, parçeyê rojhilatî de xebatê kurdolojî vêşî nameyê kerdiş.

Eke ma xebatê ke yew milet ser ro viraziyayê na beşa zanistî miyan de qebûl kerê, ma vînenê ke fikrê neteweperwerî dinya de badê şoreşê Fransa dest pêkerdo û şoreşê Fransa tepiya dewleta kurdan çiniya. Semedo ke dewleta kurdan çinêbiya û badê şerê cîhanî yo yewinî welatê kurdan, Kurdistan biya çar parçeyî kurdolojî aver nêşiyo.




Herçiqas roşinbîrê kurdan derheqê tarîx, edebiyat û folklorê kurdan de xebatî kerdê zî ge-ge çinêbiyayişê îmkananê maddî û manewî ge-ge semedo ke ziwanê kurdî qedexe biyo nê xebatan bes nêkerdo û kurdolojî zaf aver nêşiyo.

Xebatê roşinvîranê kurdan serdema modern de Stenbolê de dest pêkerdê û heta ewro zî nê xebatî dewam kenê. Eke kes sey sernameyanê behsê nê xebatan bikero:

- Qonaxê Destpêkî (Stenbol, Badê osmaniyan)
- Qonaxê Kurdistana Başûr
- Qonaxê Şamî
- Qonaxê Kurdistana Rojhilat
- Qonaxê Rûsya
- Qonaxê Kurdistana Vakûr
- Qonaxê Diyasporayî

Nê Qonaxan de tarîxê edebiyatê kurdan ra heta folklorê kurdan tewir-tewir xebatî biyê. Ma Pîremerdî ra tepêşê heta Keyeyê Bedirxanan, Xelîl Xeyalî ra tepêşê heta Hîlmiyê Sêwregî xeylê roşinbîran kurdolojî ser ro xebatî kerdê.

İsmail Beşikçi

Labelê çi heyfo ke dewleta kurdan çinêbiya û nê xebatî ca yê xo de mendê û neslê ke badê nê roşinvîran ameyê nêşayo nê xebatan hewna aver bero. Bêguman Kurdistan bî çar parçeyî tepiya, her parçeyê Kurdistan de kurdan zilmêno zaf gird vîna û avernêşiyayişê nê xebatan de para nê zilmî zî est a.

Parçeyê Kurdistan o ke tirkiya de mende, parçayenê bînan ra teber, kurdîtiya kurdan bi destê dewleta amê înkar kerdene û nameyê kurdan bî "Dağ Türkleri." Semedo ke dewlet îspatkero ke kurdî "Dağ Türkleri yê" zaf xebatî kerdî. Nê xebatê ke realîteya kurdan înkar kenê û wazenê ke rastiyeyî nêvijyê meydan, kes eşkeno bi "antî-kurdolojî" ya namekero.

Xebatê antîkurdolojî seba şarê tirkiya neşr biyê û dewlete bi nê xebatana zaf propagandayî kerdê. Nuştoxanê nê kitaban rê zaf qiymet dayê û tim nê nuştoxî vetê vernî.

Heta nuştoxê tirkî yan zî nuştoxê kurdî yê ke "Dağ Türklüğü" qebûl kerd bi dewlete rê bes nêkerdê dewlet xo ver ra nuştoxê xerîbî vetê û bi fekê înana zurî kerdê. O yo ke ma zanê tewr meşhûrê ci Dr. Friç o.

Bi nameyê Dr. Friç ya kîtabêk "piyase" de gêrayê, herçiqas nameyê ci; "Kürtler, Tarîhî ve Îçtîmaî Tedkîkat" (Kurdî, Tedkîkato Tarîxî û Sosyal) bo zî, kitabî miyan de amaco bingeyîn înkarkerdişê estbiyayişê kurdan bî. Dima zîwannaso erjaye, Bedirxanê kirdan (zazayan) M. Malmîsanijî goreyê cigêrayişanê xo tespît kerd ke Dr. Friç; Naci İsmail Pelister o. Na mînak ra zî aseno ke zûrê Kemalîstan înan rê bes nêkerdê, bi fekê roşinvîranê (!) xerîbana zî zûrî kerdê ke çinêbiyayişê kurdan îspat bikerê!

Dewleta ke seba şarî nê kitabî neşr kerdê xo miyan de, yanê mueseseyanê xo miyan de zî kitab û vilavekî kerdê neşr û xo miyan de kerdê vila. Nê kitab û vilavekan de zî derheqê kurdan melûmatî dayê memur û eskeranê xo. Kes eşkeno nê kitab û vilavekan rê vajo "kurdolojiyo nimite."

Dewlete bi no şekla îdeolojiyê xo yê fermî (resmî) viraştê û kamo ke nê îdeolojiyî qebûl nêkero, çi kurd çi tirk kamo ke behsê kurdan bikero bi îşkence, zîndan, surgun û tadaya muameleyêno giran vînayê.

Warêno winasî de yew camêrd werzeno û derheqê kurdan de xebatî virazeno û Kemalîzmî rexne keno. Kes wa ê wextî sey ewro ya nêfikiriyo, wexto ke İsmail Beşikçi Kemalîzmî û polîtîkayê ke Kurdistanî ser ro yê rexne keno, kes nêwetano îdeolojiyê fermî rê yew rexneyêno masûm bikero. Neteweperwerê kurdan daxîl kes nê eşkeno behsê kurd û Kurdistanî bikero.

İsmail Beşikçi, Serra 1939'î de qezayê Çorumî İskilip de maya xo ra beno. Dibistan û mektebê orteyî İskilip de, lîse Çorum de waneno. Serra 1962'î de Zanîngeha Enqerê de Fakulteya Zanistanê Siyasiyan qedêneno. Serra 1961'î de seba staj kerdene yeno Elazîz. Elazîz de winêno ke qeymaqam semedo ke dewijana dekewo tekilî yew tercuman xo de çarneno. No hal zaf bala ey anceno û ûca de fam keno ke îdeolojiyo fermî, derheqê kurdan de zurî keno. Serra 1963'î de seba eskereyî embazanê xo ya ca yê xo virneno û yeno Bidlîs de eskereyî keno. Wextê ronayişê Unîversîteya Ataturkî ya Erziromî de sey asîstan xebitêno û kewno dersan. Semedo ke dersan de behsê kurdan keno, derheqê ey de cigêrayişo îdarî abêno û unîversîte ra erziyeno. Nê erziyayişî ra tepiya heyatê Beşikçi surgun û zindanan de ravêreno.

Beşikçi, nê şertanê çetinan miyan de zî nêvindeno û her yewê ci zaf qiymetin 36 kitabî nuseno. Nê kitabanê ci ra 32'yê ci tirkiya de yenê qedexekerdiş.

Tirkiya de hende akademîsyenê kurdî, hende nuştoxê kurdî, hende hunermendê kurdî estî bî –û estê- semedo ke ca yê xo vindî nêkerê propagandayanê dewlete rê veng nêvet û qalê kurdîtiya xo nêkerdê. Labelê yew camêrd İskilip ra werişt û seba kurdan –yan zî seba namûsê xo yê entellektuelî- des û hewt serrî zîndanan de îşkence dî, surgun bî û bi keyeyê xo ya piya zaf zehmet ant. Bedelo ke Beşikçi dayo ca yê, kitabê ke derheqê kurdana nuştê ewro zî rayîrê ma kenê roşin û ê do meşt zî rayîrê ma roşin kerê.



# Sûr a Amedê careke din vejiya!

Emre Topuz – Derya Kılıç

Ji bo Fesih Gündoğar, peyva avahîsaziyê bê bawername tê bikaranîn. Gündoğar, tenê heta pola 4'ê çûye dibistanê. Di destpêkê de pîşeyê wî temîrkirina otoyan bû. Lê 31 salan berê bi kilsê jiyana wî hatiye guhertin. Gündoğar di destpêkê de bi kilsê maket çêkirine û rojbiroj ev kar pêşxistiye û îro jî vî pîşeyî berdewam dike. Ew gelek ji keviran hez dike û bi eleqe û hezkiriyeke mezin ve bi keviran re mijul dibe. Dema ku teşeyê dide kevirekî sade û bi vê re parçeyeke dîrokî çêdike, gelek kefxweş dibe. We kefxweşiya xwe ji BasNûçe'ye re tîne ziman.



Gündoğar, bi "Maketa Sûr" a navçeya Amedê tê nasîn. Wî 21 salan berê dest bi çêkirina maketê kiriye û hîn jî berdewam dike. Herwiha Gündoğar, ji bilî Sûrê wekî din jî hin berhem çêkirine. Şaredariya Amedê di Daîreya Turîzm û Çandê de odeyeke daye Fesih Gündoğar û wî ew ode ji xwe re kiriye atolye û di vê atolyeyê de bi keviran berhemên xwe çêdike. Fesih, ji bilî Sûrê wekî din jî beheman çêdike. Heta hin berhemên xwe wekî sê-rehendî (3D) çêkirine. Herwiha di atolyeya wî de ji bilî maketên cihên dîrokî, maketên avahiyên modern jî hene.

## Ji temîrkeriya otoyan ber bi avahîsaziyê

Fesih Gündoğan, jiyana xwe, berhemên xwe û hezkirin ji xebata xwe, ji BasNûçe'yê re rave kir. Gündoğar jiyana xwe ya ku ji Lîcê heta Sûrê bi vî awayî ji me re got: "Ez li Lîcê ji dayîk bûm, Ji ber erdheja Lîceyê, malbata min koç kir û em hatin Sûrê. Ez li Sûrê 17 salan jiyam. Ez niha li Şarederaya Bajerê Mezin a Amedê di beşê Turîzm û Çandê de karmend im. Min maketa xwe ya yekem di sala 1984'an de çêkir. Wê demê temîrkerê otoyan bûm û ez bi çêkirina maketan ra jî mijûl dibûm. Gelekî maketê min hene û eger min demek vala peyda bikira, bi çêkirina maketan re mijul dibûm."

Fesih bi çêkirina maketên kilsî, her ku diçe berdewam dike û xwe pêş dixe û ji bilî vê karek din nake: "Dema ku ez di temîrxaneyê de dixebitim, min bi parçeyên kilsê, fîgûran çêdikirin. Paşê min biryar da ku ez ê bi wan mizgeftek pêk bînim. Gelekî baş bû. Ji wê rojê vê ez bi vî karî re mijûl dibim."



Gündoğar di sala 1993'an de maketa Xana Xusrew Paşa (Deliler Hanı-Kerwansaray) ku niha li Amedê weke otel tê bikaranîn, çêkiriye. Wî maketa xanê bi awayek hurgulî çêkiriye. Lê ji bo projeya mezin şaredariyê alîkariya Fesih kiriye. Dema ku şaredarî, vê maketê dibîne, ji wî re pêşnîyara kar dikin. Wî jî qebûl kiriye. Dema ku di şaredariyê de dest bi kar dike, dest bi çêkirina maketa Sûrê jî dike û 21 salan maketa Surê çêdike."

## Ji ser banên xaniyan pîvana Sûrê

Fesih Gündoğar derbarê zehmetiyên ku kişandiye de jî axivî û got: "Helbet dema ku min ev kar dikir, bi gelek zehmetiyan re rûbirû mam. Min di destpêka maketê de wêneyekî Sûrê ku ji 60 salan berê de ji asmanê hatiye girtin, peyda kir. Ez yek bi yek diçûm xaniyan û gav bi gav li kolanan digeriyam. Lê hemû kes destûr nedidan ku ez biçim xaniyê wan û pîvanan bigrim. Min di vê mijarê de gelekî zehmetî kişandan. Ji ber vê yekê min çareseriyek peyda dikir. Bo mînak, ez bi dizîka diçûm ser banê wan û min pîvan digirtin. Tiştên bi vî awayî jî min kirine. Dema ku karê pîvana xîzê xelas bû, min berê Sûr çêkir û paşiyê jî min birc temam kirin. Piştî wan jî min dest bi xaniyên xakê kir. Ez bi pîvanên 1/500 re dişuxilîm. Di maketê de hemû tişt li gorî pîvanê hatine çêkirin. Mala ku ez tê da jiyabûm, min ji bîr nekiribû û bi awayek berfireh wê li ser maketê çêkir.

Gündoğar derbarê kevirên ku ji bo vî karî bi kar tîne jî zanyarî da û diyar kir ku ew ji bajarên derdorê kevirên kalker û bazalt tînin û bi kar tînin. Wan keviran, bi tester, kêr û torpoyê tên nexişandin.

"Min di destpêka maketê de wêneyekî Sûrê ku ji 60 salan berê de ji asmanê hatiye girtin, peyda kir. Ez yek bi yek diçûm xaniyan û gav bi gav li kolanan digeriyam. Lê hemû kes destûr nedidan ku ez biçim xaniyê wan û pîvanan bigrim. Min di vê mijarê de gelekî zehmetî kişandan. Ji ber vê yekê min çareseriyek peyda dikir. Bo mînak, ez bi dizîka diçûm ser banê wan û min pîvan digirtin. Dema ku karê pîvana xîzê xelas bû, min berê Sûr çêkir û paşiyê jî min birc temam kirin."

## Maketa Sûrê di şer û pevçûnan de zerer dît

Fesih ji ber şer û pevçûnên Sûrê û qedexeyên derketina derveyî 4 mehan nikarî li ser maketê bixebite. Gündoğar diyar kir, ji ber ku maket dê zererê bibîne an dê xerab bibe, gelek tirsaye. Ji ber ku 21 salan li ser xebitiye û eger keda wî, zerer bidîta, dê gelekî xemgîn bibûya. Maket, di nava Sûrê de li aliyê Derê Merdînî pêşkeşê gel tê kirin û li wê derê Şaredariya Amedê, ofîsek turîzmê vekiriye û maket jî li vê derê cih digre. Ji ber vê, di dema şer û pevçûnan de gelek gulle lê ketine û maket xerab bûye.

Fesih Gündoğar, derbarê cihên ku di maketê de xerab bûbû agahî da û da zanîn ku Mizgefta Mezin, Deriyê Mêrdînê xerab bûbû. Nêzîkê 4 mehan wî nikaribû here ser kar û û maketê çêbike û ji ber vê, xebata wî dereng ketiye. Herwiha eşkere dike ku wê demê Nava Kelehê û Çemê Dîcleyê nîvê mabûn. Lê ew hîn jî li ser maketê dixebite û hewl dide di demeke nêzde biqedîne. Gündoğar ragihand ku aniha burcan çêdike û hinek din jî dê li ser çema Dicleyê bixebite.

## Pîroziya hejmara 21'ê

Gündoğar diyar kir ku ji bo wî herî zêde çêkirina Mîzgefta Mezin (Ulu Cami) dijwar bû. Çêkirina vê mizgeftê 6-7 mehên wî girtine. Gündoğar, wateya 21'ê bi wî awayî rave dike: "Em niha di sedsala 21'mîn da ne. Derdora maketê 21 metre ye û bilindiya vê jî 21 cm e. Li Sûrê çar derên mezin hene û bi deriyên biçûk re dibin 21 derî. Dibêjin li Sûrê 82 birc hene; Lê 121 birc hene. Ev xebata min 21 sal in berdewam dike. Lawê min ê mezin 21 salî ye. "

Navçe di prosesa aloziyê de gelek xerab bûye. Fesih rewşa Sûrê wisa rave kir ku xanî û avahiyên dîrokî hilweşiyan an jî xerabê bûn. Kesên ku malên wan hilweşiyan an xerab bûn, koçî navçe û taxeke din kirin yanê mecbûr man ku koç bikin. Ew kes tên li maketê dinêrin û gelekî hestiyar dibin.

Gündoğar dixwaze ku demildest maketa Sûrê xelas bike, dest bi karekî din bike û wisa pê de çû: "Ez dixwazim piştî malnişîniyê jî çêkirina maketê berdewam bikim. Heger ji bo çêkirinê pêşnîyarek bê kirin. Ez ê qebûl bikim. Amed an bajarek din ferq nake. Ez dikarim biçim û çêkim."

## Merasima vekirina maketê di 21'ê mehê de ye

Gündoğar, bernameya pêşerojê ji me re rave kir û got: "Ez dixwazim kevirtiraşiyê fêrî neslê pêşerojê bikim. Şaredarî niha Navenda Kongre û Çandê çêdike. Dema ku ev temam bû, ez ê çend salên din kursekê vebikim." Merasima vekirina maketê jî wê di roja 21'ê mehê de pêk bê. Gündoğar dibêje ku di maketê de hemû xanî, îbadetxane, kolan û karwanseray hene û heta niha di 39 fuaran de hatiye pêşkeş kirin.

## Ebasê Kemendî

# Pîrê hunera kurdî

Mehdî Caferzade




Bajarê Sinê yê Rojhilatê Kurdistanê di nava kurdan de weke dergûş û navenda hunera kurdî tê zanîn. Hunermendê gewre Seyyid Elî Esxerê Kurdistanî, stranbêjê mezin û nemir Mezher Xaliqî, hunermend û stranbêjê navdar Nasir Rezazî, şair dengbêj û hunermend Ebbas Kemendî, Koma Kamkar, nivîskar Elaeddîn Seccadî û gelek kesayetiyên navdar ê kurd ji Sinêyê ne.

Ebbasê Kemendî bi xebata xwe û hunera xwe di dilê kurdan de cihekî wî yê taybet heye. Ebbasê Kemendî di sala 1952`ê li Corabada Sineyê ji dayîk bûye. Nivîskar, stranbêj, meleodîsaz, helbestvan û nîgarkêş bû. Wî perwerdehî nedîtibû. Ebasê Kemendî zêdetir ji çar deheyan di warê hunera Kurdistanê de xebitî û navê xwe di dîroka hunera Kurdistanê de mayinde kir û sala 2014`ê koça dawîn kir.

Ew berî her tiştî şanonivîs û bernamesazê televizyon û radyoyê bû. Ew 35 salan di radyo û televeziyonê de xebitî û şano û komedî û rêzefîlm nivîsîn û çêkirin, tevî van xebatan nîgare jî kişandin, helbest û çîrok jî nivîsîn ku navê xwe weke helbestvanekî kurd xiste ser zimanê gel. Lê xelkê tenê ew weke stranbêj nas dikir. Di dirêjahiya temenê xwe de Kemendî li ser huner, çand, muzîka kurdî kar kiriye. Wî hevîrê xwe bi hunerê stra bû û di, nîgarkêşî, şano, helbest, sînema, muzîkê de gelek berhemên baş ji kelepora kurdî re hiştine.

Hemû temenê xwe li Sineyê derbas kir. Hatina wî ya nava mûzîkê jî ku di vî warî de gelekî binavûdeng bû, tiştekî tesadufî bû û bêyî perwerdehiyê û paşxaneyekê bû. Bi xwe digot berî ku ew here radyoya Sineyê ti caran sazjenîn ji nêz ve nedîtibû.

Birayên Kamkar bi alîkariya Ebas Kemendî di mûzîka kurdî de mayinde bûn. Du deheyan berî niha Ebas Kemendî ji wan cuda bû û êdî venegerîya meydana mûzîkê. Ebas Kemendî digot; "Di wan salên piştî şoreşa Îslamî ya Îranê ku mûzîk ber bi tarîxaneyên malan va hate dehfdan." Vî rê û rêbaza domandina jiyana hunerî hînî Koma Kamkaran kir.

Kemendî derbarê xwe digot: "Eger îro ez ji dinyayê herim, herî kêm sê stranên min yên xweş û taybet hene ku ez wan bi xwe ra binax dikim. Êdî ti kes nîne ku bikaribe wan weke min îcra bike û ez bikaribim jê bixwazim ew wî karî bike, divê ku Ebasekî din were dinyayê."

Bi xwe soranî axêv bû û ji derdora Sine û Seqizê bû. Lê dilê xwe bi çand û zimanê Hewramanê ve girêdabû. Di piraniya stranên xwe de helbestên goranî bi kar dianî, berhemên helbestvanên Hewramanê berhev kirin û yekem car weke dîwanekê çapkir û kitêbek jî derbarê Hewramanê ji xwe weke yadigar bi cih hişt.

Bav û apê wî jî dengxweş bûn û distran. Bavê wî li bilûrê dixist. Malbata wî goştfiroş bûn û sê mehan piştî ku Ebas hatiye dinyayê, bavê wî tê kuştin.

Xebata xwe ya hunerî bi awayekî profîsyonel ji temenê 18 saliya xwe de destpê kir û çîroka xwe ya menzûm bi zimanê kurdî bi navê "Şew bû û Hemê Şiwan" nivîsîbû ku di ezmûna nivîskarî ya radyoya Sineyê de bûbû yekem. Ev çîrok du caran ji radyoyê hate belavkirin û gelek hate pêşwazîkirin û piştre Ebasê Kemendî carek din ew ji nû ve nivîsî û belav kir.

Du salan piştî xebata li radyo, televezyona Sineyê jî vebû û Ebas dest bi karê nivîsîna şano û fîlman jî kir. Gelekî dixebitî û xebateka wî ya balkêş dûblaja rêzefîlma Lorel û Hardy bi zimanê kurdî bû ku di vê rêzefîlmê de hevdem ji dêvla çar karekteran ve peyivî.

Di salên destpêka xebata xwe li radyoya Sineyê, wî Hesenê Kamkar -bavê birayên Kamkar- nas kir û yekem tecrubeya xwe di dinyaya mûzîkê de bi gotina helbestekê ji bo Hesenê Kamkar bi minasibeta "Cejnên 2500 salên Şahenşahiyê" wisa destpê kir. Piştre hevkariya Ebas û Hesenê Kamkar heta Îoreşa Îslamî ya Îranê dewam kir û piştî demekê Ebas Kemendî kete nava dinyaya stranbêjiya pispor û heta dema şoreşê 30 stran bi dengê wî ji radyo û telvezyonê hatin belavkirin. Piraniya stranên ku digot, bi xwe ji folklora kurdî hildibijart û ji dêvla helbestên gelêrî, helbestên nû yên şairên kurd datanî.

Wek ku bi xwe digot, malbata wî ji ber sedemên dînî û mezhebî nedixwestin ku ew karê mûzîk û stranbêjiyê bike û atmosfera bajarê Sineyê jî wisa bû ku gelek stranbêjan bi navekî din xebata xwe didomandin.

### Sebrî Gulfiroş

Ji bilî radyo û telvezyonê tenê stranek wî hate bazarê ku ew jî bi navê Sebrî Gulfiroş derket. Di hevpeyvîna xwe bi govara Ramanê re digot: "Wêneya min li ser plakê hebû. Piraniya keçikên dibistanê wêneyên stranbêj û hunermendên din li ser kitêbên xwe dizeliqandin, ji bexta min ya xirab, keçikekê jî wêneyê min li ser kitêba xwe xistibû. Birayên keçikê ez nas dikirim, hatin ewqas li min xistin ku bêvil û didanê min şikandin, wê demê min bi xwe re got ez ê carekî din tiştekî wisa nekim."

Piştî wê Ebasê Kemendî xebata xwe bi malbata Kamkar re domand û piştre bûn koma herî binavûdeng ya Îranê. Yekem albuma wan bi navê Hewramanê, sala 1981'ê hate belavkirin.

Wisa ku Ebas Kemendî stranên albuma Heraman bi awayekî demildest bi birayên Kamkar ve îcra kir û hate qeydkirin. Ebas Kemendî û Kamkaran piştre albuma Pirşeng û dû re jî Gelwêj derxistin ku weke albumeke kurdî ya herî populer e.

Piştî ku ji Koma Kamkaran veqetiya êdî ji mûzîkê jî dûr ket û vegeriya ser xebata xwe ya sereke yanê nivîsîna ji bo radyo û telvezyonê û heta sala 2005'ê ku malnişîn bû. Vê xebata xwe berdewam kir, hejmareke zêde ji rêzefîlm û şano ji bo telvezyonê nivîsîn û çêkirin û tevî van xebatan çîrokên lokal û berhemên helbestvanên binavûdeng yên kurd jî berhev kirin û çapkirin.

Di salên dawiya temenê xwe de dîsa vegeriya ser mûzîkê û albuma Kîjî Kurd bi ahengsaziya Celîl Endelîbî derxist ku hemû helbestên albumê jî bi xwe gotibû û strana sereke ya albumê jî bê mûzîk îcra kiriye.

Ebasê Kemendî fîlmname jî nivîsîne wî dixwest ku navê xwe li ser perdeya sîneyamê jî bibîne lê qet negihîşte vê hêviyê. Du çîrokên dirêj bi navên "Zehra Efî" û "peskûçeyên Sineyê" jî nivîsîne ku nehatine belavkirin.



"Hemû temenê xwe li bajarê Sineyê derbas kir û li ti zanîngehan jî nexwendibû, hatina wî ya nava mûzîkê jî ku di vî warî de gelekî binavûdeng bû, tiştekî tesadufî bû û bêyî perwerdehiyê û paşxaneyekê bû. Bi xwe digot berî ku ew here radyoya Sineyê ti caran sazjenîn ji nêz ve nedîtibû."